# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 76 02 - 08 Mijdar 2015 basnews.com




**Nûber di xizmeta kurdî de ye**

R16

# Bêdengiya beriya bagerê

Serdana desteyên siyasetmedar, diplomat û fermandarên welatên cîhanê bo Hewlêr'ê zêdetir bû. Di rojeva dîpolmat û fermandarên cîhanî û kurd de amadekariyên operasyona Reqqa, Şengal û Musil'ê heye. Li hêla şandina Peşmerge, çek û taqemenî bo cîhên stratejik yên Şengal û Mûsil'ê jî didome.

Hefteya borî Wezîra Berevaniya Almanya'yê Ursula von der Leyen, Kordînatorê Hevpeymaniya Navdewletî ya şerê li dijî DAIŞ'ê Brett McGurk, Fermandarê Hêzên Navendî yê DYA'yê Lloyd Austin, Balyozgerê Bexda'yê Stuart Jones û gelek fermandarên pilebilind ê DYA'yê serdana Barzanî kirin.

R02-3



Nûnerê PYD'ê Sîhanok Dîbo:

## Ji desthilatdariya kurdan aciz in

"Peywendiyên me bi biraderên YNK'ê re, bi PDK'ê û Tevgera Goranê jî re gelekî baş in. Di heman demê de danûstendinên me bi KCK'ê jî re baş in."

R08-9

## Bedîuzzeman Seîdê Nursî

Seserra 20. de alimo tewr pîl ê muslumanan o ke kurdan mîyan ra vejeyo. Muceddîdê dînî hesibîn o, yanî alimo ke her seserre de yeno û dînî goreyê şart û şurtanê 'esrê xo îzah keno û dîn rê xizmet keno.

R05



# Hewlêr paytexta dîplon









**Mustafa Turan**

Hatina şandeyên siyasî, dîplomatîk û leşkeri yên girîgtirin dewletên dinyayê ya Herêma Kurdistan'ê didome. Piştî ku DAIŞ li Rojhilata Navîn, bi şêweyeke hov û gefxwar derket ser sehneyê û HRK'ê ji bo dewletên hêzdar ên dinyayê bû tekane stareya li herêmê, paytext Hewlêr bû navenda serdanên dîplomasiya dinyayê.

Li aliyeki Wezîra Parastinê ya Almanya'yê Ursula von der Leyen di sêyem serdana xwe ya nav salê ya Hewlêrê de li perwerdegeha Pêşmerge bêhna xwe da, ji aliyê din ve berpirsên siyasî û leşkerî yên DYA'yî bê li Hewlêrê bênavber dîplomasiyeke gur dimeşînin. Brett McGurk'ê ku ji bo erka Nûneriya Taybet a Serokê DYA Barack Obama û Koordînatoriya Hevpeymana Navnetewî hate erkdarkirin jî bi destpêkirina erka xwe re berê xwe da Hewlêrê. Her wiha berpirsên leşkerî yên Pêşmerge wek mêvanên Parlamena Ewropa (PE) li Brukselê hin hevdîtinên grîng pêk anîn. Serdaneke balkêş a Hewlêrê jî serdana Şaredara Paris'ê Anne Hidalgo bû.

Li gel van geşedanan, agahiyeke erênî jî ji Teksasê hat. Dadgeha Parêzgeha Teksasê serdana hikûmeta Iraqê ya ji bo rawestandina frotina neftê ya ji alî Hherêma Kurdistan'ê ve red kir. Dadgehê biryar da ku ji bo frotina neftê ya rasterast a Herêma Kurdistan'ê tu astengiyeke hiqûqî tune ye. Piştî vê biryarê, wê Herêma Kurdistan bê astengî dikaribe nefta xwe bifroşe DYA yan jî dewleteke din.

**Nîşaneya serxwebûnê: Pêwendiyên kurd û alman**

Li gel ku di pêvajoya sedsala çûyî de almanan li gel kurdan îmajeke nêyênî peyda kiribin jî têkiliyên aborî yên ku ji 2010'an ve hatin destpêkirin û beyana Şansolye Angela Merkel a alîkariya çekdarî ya ji bo Pêşmerge, di deftera têkiliyên kurd û almanan de rûpelek nû vekir. Di sala 2010'an de, piştî ku Berlînê Bexdayê piştguh kir û bi ser şirketa enerjiyê RWE'yê ve li Kurdistan'ê dest bi lêgerîn, derxistin û frotina gazê kir û her wiha hin peymanên bazirganî mor kir, Wezareta Neftê ya Iraqê bertek nîşan da û van peymanan wek peymanên der yasayî ragihand.

Pêwendiyên Almanya û RHK'ê yên ku piştî peydabûna DAIŞ'ê, bi alîkariyên çek û cebilxane û hem li Almanya hem jî li Hewlêrê perwerdekirina Pêşmerge geş bûn û bi sêyem serdana Wezîra Parastinê Ursula von der Leyen a Hewlêrê gihîştin asteke balatir, wek xwegoncivandina serxwebûna Kurdistan'ê tê şirovekirin. Lewre, ji 2. Şerê Dinyayê şûn ve, yekem car e ku Almanya çek û cebilxane dişîne herêmeke şer û ev birayar çek şandına ji bo Pêşmerge, wekî ku Serokê RHK'ê Mesud Barzanî di civîna çapemeniyê ya li gel Leyen de destnîşan kir, wek nîşaneya pêvajoyeke nû ya destpêkirina pêwendiyên Almanya û Kurdistan'ê tê nirxandin.

**Leyen: Peşmergeyan heybeta DAIŞÊ têk bir**

Wezîra Parastinê ya Almanya Ursula von der Leyen di serdana 3. a Hewlêrê de, li gel baran û sermayê jî çû serdana Yekîneyên Zêrevanî yên Peşmerge yên ku li kampa perwerdehiyê ya ku ji hêla ji aliyê Almanya'yyê perwerdehî dibînin.

Ursula von der Leyen'a ku ji hêla Pêşmergeyên jin ve hate pêşwazîkirin piştî ku tatbîkata Pêşmergeyan temaşe kir axaftinek kirç Leyen da zanîn ku ew ê alikariyên xwe yên bo Pêşmergeyan zêdetir bikin û got "Em têkoşîna Pêşmergeyan a li dijî DAIŞ'ê pîroz dikin. Ev serdana min a 3'yem e. Di her serdanê de ez dibînim ku Pêşmerge roj bi roj bêtêr bir bi profesyoneliyê ve diçe." Leyen diyar kir ku wan heta niha roketên antî-tank yên Mîlanê tê de 800 ton çek û muhîmat dane Pêşmergeyan û got ku ji 4 hezar û 700 Pêşmergeyan re jî perwerdehiya leşkerî dane. Leyen balkişand ku ewê asta 3 em a alîkariya Pêşmergeyan jî dê bikin jiyanê û wiha berdewam kir "Em ji bo çavderiya perwerdehiya hêzên Pêşmergeyan û ji bo pêdiviyên Herêma Kurdîstanê hîn bibin, hatin Hewlêrê. Pêşmerge bi têkoşîna xwe ya wêrek heybeta DAIŞ'ê têk bir. Ji bo di têkoşîna li dij DAIŞ'ê de baweriyê bidin, divê hemû dewlet piştgiriyê bidin Pêşmergeyan.

**Barzanî: Nîşaneya biratiya kurd û alman e**

Leyen ku ji hêla Serokê RHK'ê Mesud Barzanî ve hat qebûlkirin, piştî hevdîtinê di daxuyaniya hevbeş de hatin cem hev. Barzanî di axaftina xwe de diyar kir ku ew 3. serdana Leyen a Hewlêrê wek nîşaneya biratiya Kurd û Alman dibîne û hewlên wê yên kesayetî şayanî pesindayînê dît. Barzanî, bi ser Leyen ve ji bo alîkariyên çek û cebilxane yên Almanya spasiyên xwe pêşkêş kir û anî ziman ku bi alîkariya çekan hevsengiya şerê li dij DAIŞ'ê guhertiye. Barzanî, ji bilî alîkariyên çek û cebilxane, alîkariyên mirovî jî pîroz nirxand û destnîşan kir ku Almanya yek ji welatên ku herî zû deriyên xwe ji penaberan re vekiriye.

Leyen dest nişan kir ku ji berê de têkiliyên wan û yên RHK'ê heye û diyar kir ku di hevkariya wan û yên RHK'ê ya di têkoşîna li dij DAIŞ'ê de minake û got: " Di vê pêvajoyê de baweriya di navbera me de bi hêztir bû û ev jî di hevkariyên rojên pêşde jî gavek girînge. Alikariyên me yên ji bo Pêşmergeya wê bidome. " Leyen peznê Pêşmergeyên di şer de da û got ew hewl didin ku rewşa mexdurên şer bêne başkirin û got divê hemû alî dest bidin vê mijarê.

Leyeyê piştî hevdîtina bi Barzanî re, bi Nêçirvan Barzanî re jî hevdîtinek pêk anî. Leyen berî ku derbasî Hewlêrê bibe bi Serokkomarê Iraqê Fuad Masum û Serokê Parlementoyê Selîm el Cuburî re jî hevdîtinek pêk anî bû.

**McGurk: Li Hewice'yê fermandariya bala ya Barzanî**

Di hevdîtinên diplomatîk yên li Hewlêrê de ya balkêş hevdîtina Nunerê Taybet Brett McGurt ku li dijî şera DAIŞ'ê ve ji hêla Serokê DYA'yê Barak Obama ve hatibû şandin bû.

Her wiha McGurk'ê ku Kordînatorê Koalîsyana Navnetewî ya li dij DAIŞ'ê ye jî, di hevdîtina bi Serokê RHK'ê Mesûd Berzanî'de wiha got: " Operasyona Hewicê bi plan û bala fermandariya Barzanî bi ser ket" McGurk di hevditina bi Barzanî re de got ku planên operasyona Hawicê ji aliyê Serok Barzanî ve hatiye amadekirin û bi bala fermandariya wî jî be ser ketiye.

Piştî operasyona Asayîşa Giştî ya Kurdistanê(Parastin) ya Hewîce ya ku bi piştgiriya Hêzên Taybet ên DYA'yê û daxuyaniya Pentagonê ya 'Ew ê operasyonên wiha bidomîn.' McGurk, li gel fermandarên leşkerî yên DYA'yî, bi burokratên asayişê yên Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî re hevdîtinek pêk anî.

Serok Barzanî, di hevdîtinê de diyar kir ku bi operasyona Hawicê derbeyek li dijî hişmendiya têkçûyînê ya li dij DAIŞ'ê bû û got ev yek jî bi hevkariyar DYA'yê û RHK'ê pêk hatiye û got: "Me nîşan da ku em dikarin derba mirinê li DAIŞ'ê xin" Barzanî her wiha da zanîn ku azadkirin û xilaskirina jiyana mirovan karekî pîroz û mezin e. Barzanî got ku leşkerên DYA'yê yên ku jiyana xwe ji dest dane ji bo nirxên hevkarî bone û sersaxî ji malbatên wan re xwest.

# masiyê






Di hevdîtina ku Rawêjkarê Asayişa Giştî Mesrur Barzanî û Serokê Dîwana Serokatiyî Fuad Huseyn û Serbalyozê DYA'ê ya Baxdadê Stuart Jones jî amade bûn de McGurk li ser rola operasyona Hewicê ya Barzanî jî rawestiya û wiha got:: " Serkeftina operasyonê bi plan û fermandariya Serok Barzanî bi ser ket." McGurk got ku ewê bi operasyon û hevkariya wan berdewam bike.

**Mesûd Barzanî bi dîlê Hewîce'yê re hevdîtin pêk anî.**

Serokê RHK'ê Mesut Barzanî û 69 welatiyên erebê yên ku di operasyona Hewîcê de ji aliyê Parastin Dijî-Teror û hêzên taybet yê YDE hatibûn xelaskirin hevdîtin pêk anî û got: nijadî an jî olî her çibe bila bibê ev operasyon ji bo nirxê em didin mirova û bi pêwîstbûna vê baweriyê pêk hat. Di civîna ku Serok eşîrên ereba jî bêşdar bibûn Barzanî ragihand ku , DAÎŞ ji bo hemû bawerî û gelan re neyarê hevpar e û yên rûmeta wan ji mirovatiyê re hebe divê li dijî wan têkoşînê bike.

Barzanî wiha gazî dîlên rizgarkirî kir " Azadî ji her tiştî bi qîmetire. Vegera weyî jiyanê ez ji çavê we di bînim. Kesên ku ji mirova hez dike divê li dijî DAÎŞê şer bike. Me ev pirsiyarî anî cîh, lewra aramiya herî mezin ev e ku ji bo kesên din jî mere kari be tiştna bike. Hûn hemû birayên me û mêvanên me ne."

Ji bo ku me hin istixbarat li ser kuştina dîlê di destê DAÎŞê de bi dest xistibû û ji bo em ji van kuştina re bibin asteng me qanî vê operasyonê bûn. Barzanî rave kir , "Ev operasyon ji bo xelaskirina we bû û hûn kesên bi şans in. Lê mixabin hin welatiyên kurd peşmerge bi qasî we ne bi şens bûn û ew bûn qurbanê şer. Pişti axaftina Barzanî dîla, ji bo rizgarkirina xwe şêkir û spasiyê xwe ji hêzên peşmerge û leşkerên YDE anîn ziman û di şexsê Barzanî de ji bo mazûbantiya wan spasî ji gelê Kurdistan'ê re kirin.

**Fermandarê CENTCOM: Wê Peşmerge serkeftinên mezin pêk bîne**

Di nav hev dîtinên dîplamasî Hêzên Navenda Serfermandariya YDE (CENTCOM) Fermandar Lloyd Austin, Şehbenderê Bexdê Stuart Jones û rayedarên leşkerê YDE yên Irak'ê û Raweşkarê Asayîşa Giştî ya RHK'ê , Wezîrê Karê Navxwe Kerîm Sîncarî, Wezîrê Pêşmerge yê bi bervedarî hatiye tayîn kirin Şêrwan Abdulrehman û Rayedarên Pêşmerge li nivîsangeha serokatiya RHKê civînek pêk anîn.

Di civîna ku serokê RHK'ê Barzanî jî bêşdar bibû gengaza operasyonên Misûl û Kerkûk û xebatên amadehiyê, rewşa herî talî ya operasyona Enbar û Beycî yê , Pêdiviyên pêşmerge yê di şer û li ser gelek babetên cuda hat axaftin. Fermandarê CENTCOM Lloyd Austin di civînê de ragihand, bi saya pêşmerge şerê li dijî DAÎŞê pêş diçe û di vê oxirê de gelek cangoriyên ku danê jî nayê ji bîr kirin, bi operasyona Hewîce hevkariya pêşmerge û artêşa YDE derketî astek bilindtir û di siberojê de jî wê pêşmerge îmze bi avêje serkeftiyê mezin, li ser babetên çalakiyê û alikariya leşkerî piştgirya wê bidin pêşmerge bidome. Piştî Fermandarê CENTCOM Lloyd Austin, serokê RHK'ê Barzanî jî axivî û got : operasyona Hewîcêya ku bi hevpariya pêşmerge û hêzên taybet yê YDE pêk anîn tirsa dest pê kirina dawiya DAÎŞ'ê ye.

**Şaredara Paris'ê Hidalgo jî hat Hewlêrê**

Ji bo li ser binesazî, teknolojî û hawirdoriyê tecrubeyên xwe bi Hewlêr'ê re parve bike û hev dîtina pêk bîne Serok Şaredarê Parîs'ê Hidalgo hat Hewlêr'ê û ji aliyê serokê RHK'ê Barzanî ve hat qebûl kirin. Ji bo binesazî û herikbarî ya teknolojî ya bajêr ku dixwaze li Hewlêr'ê bi da jiyan tecrubeyên xwe parvekir û hidalgo got : Ev tekîlî ji bo her du bajaran jî pêngaveke erênî ye. Di hev dîtinê de Barzanî, ji bo ku têkari ya hogirtiya Kurd û Fransî ya kiribû Madam Danielle Mitterand bibîr anî û di demê tengiyê de ji bo destê xweyî hogirtiyê dirêjkirine spasiyê xwe ji hikûmeta Fransa re şand. Ji bilî li dijî şerê DAÎŞ'ê û geşedaniyê herêmê ji ha axaftin û Barzanî got: Danusendina tecrubeyan di navbera her du gelan wê bibe sedema avakirina pir a hogirtiyê

**Derbendî: RHK'ê berhema dîplomasiya Barzanî werdigre**

Serokatiya RHK Berpirsyarên Têkîliyên Giştî Dr. Hamid Derbendi li ser trafika dîplomasî û geşedaniyê herêmê pirsê BasNûçe yê bersivand. Trafika dîplomasiya rayedaran ne rewşeke ku behîtî man ê, Serokê RHK Barzanî bi salanê ku têkîliyên Navnetewî bikartîne û niha jî em sûda diplomasiya Barzanî werdigrin. Di demê qeyrana de jî Hewlêr li dinyê de ji aliyê dîplomasiyê di nav navendên herî giring de bû , ev ji serkeftiya serok Barzanî ye û çiqas bi bingeh ev kar kiriye jî xuya ye.

Bingeha qada dîplomasiyê di 91'ê de destpêkir û bê navber berdawam dike. Ev jî mîna Almanya welatên ku ji kurda hez nake gîhaştin asta qanî kirinê. Derbendi, wiha axivî:

"Birêz Barzanî gelek caran Almanya ziyaret kir. Di encama van ziyaretan de ji 2010'a û vir de têkîliyên bazirganî yê di navbera Berlîn û Hewlêr de berfireh bû lê ev berfirehbûn li ser babetên leşkerî ne bû. Ji ber DAÎŞ'ê rojhilata navîn bibû dojeh û herêmeke xetere lê di nav vê rewşê de Kurdistan mîna jîngehekê derket pêş. Ji ber vê devletên mezin li dijî RHK'ê şerm kirin û ji bo şermiya xwe borînin bi RHK'ê re ketin tekîli û hevkariyên kûr . Her wiha niha Hewlêr li dinyê de ji aliyê dîplomasiyê di nav navendên herî giring de ye. Di rojhilata navîn de ji ber hevsengiyên tewş almanya û YDE hevkariyên giring pêk anîn û serxwebûna Kurdistan'ê ne anî bin ziman jî dema ku rewş serrast bibe ji bo alikarî û piştgiriyê nedin serxwebûna Kurdistan'ê tu astengên aborî,leşkerî û siyasî na mîne. "Derbendî wiha berdewam kir, ji bo serxwebûna Kurdistan'ê pirsgirêka herî mezin aşitî ya di nav kurda de ye.

**Hewla Pêşmerge ya Ewropa: Bila NATO li Kurdistan'ê nûnertiyê veke**

Ji bilî pêvajo ya trafika dîplomasî ya li Kurdistan'ê hewl ek dîplomasiyê jî ji pêsmergeyan ve hat. Bi vexwendina fermî ya Parlamentoya Ewropa (AP) deste ya pêşmerge ya çûn Brûksel a paytextê Belçîka. Di civîna parlamentoya Ewropa de destya pêşmerge ji devletên Ewropa xwastin ku bila NATO li Kurdistan'ê nunerî yê veke û rasterast çekan bişînin ji wan re.

Rayedarên Belçîkî hevdîtinek bi Fermandarê Yekîneyan 70'emîn ya hêzên pêşmerge Şêx Cafer Mistefa û Fermandarê Eniya Gîwer- Mexmur Sîrwan Barzanî pêk anî û peyama ku ji bo şandina rasterast çekan guhertina zagonê dan.

Şêx Cafer Mistefa anî ziman ku ji bo bi DAÎŞ'ê re şere kî bi bandor bikin pêdiviya wan bi çekên giran û ji bo xwe ji êrîşên kîmyewî bi parêzinjî ji amûrên parastinê heye. Ji ber Bexda budceya RHK'ê naşîne pêşmerge di şert û mercên giran de û di nav bê derfeti yan de jî li dijî DAÎŞ'ê şer dikê

Fermandarê Eniya Gîwer- Mexmur Sîrwan Barzanî jî li dijî pêdiviya çekên giran yên pêşmergeyan, daxwaza lêkolîn kirina çekên bi navê batarya topên menzîl dirêj yên ku di destê DAÎŞ'ê de ne bê ji ku tê bi dest xistin kir.

**Waliyê Kerkûkê: Bexda nikare destwerdanê bikê**

Her wiha li ser ragihandina Wezareta Karên Navxwe ya Iraq'ê ku li Kerkûkê gerînendeyê polês û alîgirê gerînendeyê polêsekî ji kar derxistibûn û ji şûna wan du kesên din tayin kiribûn ji aliyê Kerkûkê ve bi pertekên hişt hat pêşwazîkirin. Waliyê Kerkûkê Necmedîn Kerîm diyar kir, Bexda nikare destwerdan bike û erkdarkirin û ji kar avêtin tenê bi biryara Meclîsa Bajêr ya Kerkûkê û Encumana Asayîşê dikari pêk bînin. Beriya DAÎŞ musilê bi dest bixe jî rêveberiya Bexda ragihandi bû ku Gerînendeyê Tenduristî ya Bajarê Kerkûkê ji kar avêtine û ji şûna wî kesekî din erkdarkiribûn. Piştî ku Meclîsa Bajêr ya Kerkûkê daxuyand ku ew ê vê biryarê bi cîh nîne raqeşî derketibû û Artêşa Iraqê Hêzên Dîcle xwe li nêzîka Kerkûkê bi cîh kiribûn. Piştî bi rêwerzdana Serokê RHK'ê Mesut Barzanî û hêzên di bin fermandari ya Raweşkarê Asayîşê Mesrur Barzanî yekîneyên Zerevanî li Kerkûkê xwe bi cîh kirin, Reveberiya Bexda Hêzên Dîcle paş kişandibûn.



# Şengal li benda Peşmerge ye

Di van rojên ku amadekariyên zincîre operasyonên ku wê ji Şengal'ê destpê bike û li Mûsil'ê bi dawî bibe bi lez û bez didomin û herêm ji alî Pêşmerge ve bi sê alî hatiye dorpêçkirin de, helwestên ku hewl didin ji rizgargirina Şengal'ê sûdê wergirin jî destpê kirin.

Bajarê Şengal'ê ku ji nîviyê wî zêdetir hê jî di dest DAIŞ'ê de ye, di serê salê de bi operasyonên Pêşmerge û gerîlla beşa wê ya herî grîng a ku wek Şengala Kevn tê bi navkirin hatibû rizgarkirin. Hêzên Pêşmerge, bi mebesta ku beriya zivistanê bi tevahî bê rizgarkirin, demeke ku li gel çekên giran hêzên xwe arasteyî Şengal'ê dike. Bi van amadekariyên operasyonê ku şêwirmendên leşkerî yên Amerîkî jî ji nêz ve dişopînin armanc ew e ku Şengal berî zivistanê ji destê DAIŞ'ê bê rizgarkirin.

Nîqaş û hevtawanbarkirinên aliyan ku piştî PKK'ê, bêyî agahdarkirina Wezareta Pêşmerge, komên çekdar ên ezdî yên nêzîkî xwe bi sernavê fermandariya hevpar li hev civand û li Şengal'ê dest bi êrîşan kir û astegkirina yekîneyên YPG'ê yên ku ji bo alîkariyê şandin Şengal'ê gurr bûn û bûne cihê nerazîbûnê.

Li Herêma Kurdistan'ê, bi zêdebûna çûnûhatên dîplomatîk ên dû hefteyên dawî ku bûn sedemên şiroveyên ew ê di demeke nêz de li Kurdistan û Iraqê operasyonên mezin destpê bikin re, helwestên ku hewl didin ji rizgargirina Şengal'ê sûdê wergirin jî destpê kirin. Li gel ku di civîna sêqolî ya Barzanî, Muslîm û DYA ya meha Îlonê de di derbarê çûna Rojava ya Pêşmergeyên Roj û gellek babetên din de hevpeymaniyek pêk hatibe jî, Rêveberiya Rojava derbasbûn Pêşmergeyên Roj red kiribû. Piştî ku amadekariyên rizgarkirina Şengal'ê destpê kirin û PKK'ê bêyî li benda encama amadekariyan bisekine dest bi êrîşan kir û astengkirina hêzên YPG'ê yên ji bo alîkariyê dihatin Şengal'ê daxuyaniyên rikber li dû hev hatin dayîn.

### Serfermandar Cemal Mihemed: Me ji PKK'ê xwest hêzên xwe neşîne

Serfermandarê Wezareta Pêşmerge General Ferîq Cemal Mihemed ji derbarê vê babetê de ji BasNûçeyê re ragihand ku ew ê Pêşmerge bi serê xwe operasyona rizgarkirina Şengal'ê pêk bîne. Mihemed da zanîn ku wan bi fermî ji PKK'ê xwestiye ku hêzên xwe yên din neşîne Şengalê, lewre Pêşmerge hemû amadekariyên rizgarkirina Şengal'ê li gor ku wê Pêşmerge operasyonê pêk bîne kirî ye. General Mihemed got: "Barzani çawa operasyonên herêmên din birêve biribe, wê operasyona Şengal'ê jî birêve bibe. Em ê destûr nedin ku hêzên din beşdarî operasyona Şengal'ê bibin."

### Alî Ewnî: Sedemê derengmayîna operasyonê PKK ye

Piştî ku PKK'ê ji ber ku astengî ji yekîneyên YPG'ê yên ku dixwestin derbasî Şengal'ê bibin re derxistiye Rêveberiya Herêma Kurdistan'ê(RHK) rexne kir, di derbarê babetê de Endamê Polîtburoya PDK'ê Alî Ewnî anî ziman ku ji ber helwestên PKK'ê rizgarkirina Şengal'ê dereng ketiye, lê belê amadekarî didomin û ew ê rê nedin hêzeke din ku beşdarî operasyonê bibin. Ewnî got: "Beriya Mûsilê, pêşî Şengal, dûre Tel efer, Başik û Behsan û piştî van herêman jî wê Mûsil bê rizgarkirin. Operasyona Şengal'ê jî wê ji alî yekîneyên Pêşmerge yên ku bi çekên giran hatine bihêzkirin pêk bê." Alî Ewnî angaşt ku hewldanên PKK'ê yên herêmê, bûne sedem ku operasyona Şengal'ê dereng bikeve û diyar kir ku ew hêzên ku dixwazin beşdarî operasyona Şengal'ê bibin, divê bi ser Wezareta Pêşmerge ve dawxaza fermî bikin. Ewnî got: "Em ê rê nedin hêzên ku di vê babetê de xwe li ser me ferz dikin."

Berpirsê Pêwendiyên Derve yên PDK'ê Hêmin Hawramî jî ji helwestên PKK'ê re bertek nîşan da û şandiya yekîneyên YPG'ê wek destwerdana RHK'ê nirxand. Hawramî got: "YPG, ji aliyekî ve nahêle ku Pêşmergeyên Roj derbasî Rojava bibin, ji aliyê din ve jî hewl dide ku yekîneyên xwe bişîne Herêma Kurdistan'ê. Ev tezatiyeke mezin e. Li Şengalê, pêdiviya Pêşmerge bi YPG'ê tune ye û divê ew li Rojava bimînin."

### Qasim Şeşo: Çapemeniya PKK'ê propagandaya reşkirinê dike

Fermandarê Pêşmerge yê Şengal'ê Qasim Şeşo jî di derbarê babetê de diyar kir ku di çapemeniya PKK'ê de angaştên ku PDK, ji alîkariyên ji bo ezdiyan re dibe asteng û anî ziman ku ev angaşt bêbingeh û derew in û ev derdor hewl didin ku bi propagandayên wiha RHK'ê û PDK'ê reş bikin û fesadiyê bikin. Şeşo, got ku helwestên wiha bûne sedem ku Şengal heta niha di destê DAIŞ'ê de bimîne û dom kir: "Di ragihandina wê de propagandaya reşkirina PDK'ê ya ku goya PDK ji alîkariyên ji bo ezdiyên Şengal'ê re bûye asteng û gelê me yê Şengal'ê li dij PDK'ê xwe bi çek kirine tê kirin. Ev îftira ne. Berovajî hêza ku Şengal'ê rizgar dike û diparêze PDK ye. Demek berê ez bixwe bi berpirsên PKK û YPG'ê re rûniştim û min ji wan re got, ger ku hûn vê helwesta xwe bidomînin ez ê we ji Şengal'ê dûr bixim û nahêlim careke din hûn bên Şengalê." Qasim Şeşo da zanîn ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, ji bo rizgarkirina Şengalê, planeke ku li şert û mercên herêmê xweş digoncive amade kirî ye û ji bo destpêkirina operasyonê ew li benda fermana wî ne.

### Nîzamedîn Taş: Nabe ku Şengal bibe qurbana nakokiyên hizbî

Serokê Giştî yê PWD'ê Nîzamedîn Taş jî diyar kir ku ji ber beriya rizgarkirina Mûsilê pêwîstî bi rizgarkirina Şengal'ê heye, demek dirêj e ku Pêşmerge amadekariyên operasyona Şengal'ê dike. Tas da zanîn ku ji ber PKK ji amadekariyên Pêşmerge yên operasyona Şengal'ê haydar bûye, beriya ku operasyon destpê bike, bi hin êrîşên li dij DAIŞ'ê hewl dide ku bide xuyakirin ku wa ye PKK'ê dest bi rizgarkirina Şengal'ê kirî ye, da ku piştî rizgarkirina Şengal'ê ya bi 10 hezar Pêşmergeyî ew jî ji xwe re parek ji serkeftinê bi dest bixe.

Nîzamedîn Taş, di rxandina xwe ya li gel BasNûçeyê de li ser angaşta ku "YPG dixwaze piştevaniya operasyona Şengal'ê bibe lê belê Pêşmergeyan rê nedaye" jî rawestiya û eşkere kir ku beriya niha jî PKK'ê hewldanên wisa nîşandane û di operasyonên rizgarkirina dorûbera Şengal'ê de cih girtine û ew operasyon jî weke qehremaniya xwe destnîşan kirine. Di berdewamiya axaftina xwe de Taş amaje bi wê yekê jî kir ku YPG di çend cihan de beşdarî operasyonan bûye û ji ber bê koordînasyonbûne gelek wendayî jî dane. Taş bal kişan ser operasyonan û wiha berdewam kir: "PKK dîsa di nava wan hewldanên xwe deye. Beriya destpêkirina operasyona Şengal'ê dixwaze ji xwe jî re parekê bi dest bixe. Ev ne helwesteke rast e. Zirarê dide berjewendiyên Kurdistanî. Sedema rê girtina Pêşmergayan a li ber YPG'ê jî ew bûû ku ji bo operasyona Şengal'ê ya ku ew ê di kurtedemekê de dest pê bike têk neçe. Rayedarên DYA'yê jî ji wê helwesta PKK'ê nerazîne û daxwaz dikin ku PKK jî li gor koordinasyona Pêşmergeyan tevbigerin da ku ew operasyona Şengal'ê serkeftî bibe.

### "Sedema taloqbûna operasyona Mûsil'ê artêşa Iraqê ye"

Li hêla din Nîzamettin Taş ragihand ku rizgarkirina Şengal'ê di ser nakokoyên partiyên siayasî reye û piştî wê karesat, koçberî û mirinanan Şenagal nabe bibe qurabaniyên siyasî. Her wiha Taş eşkere li ser wê yekê jî kir ku eger lihevkirinek çê bibe û PKK helwestên hizbayetî nîşannede egera wê yekê heye ku 300 gerîllayên li Şengal'ê ne jî di operasyonê de cih bigrin lê belê hin kiryaran rê li ber vê yekê girtiye. Li gel vê yekê Taş da zanîn ku operasyona rizgarkirina Şengal'ê bi geşedanên li Rojava û Iraqê re peywendîdar û wiha axaftina xwe wiha domand: "Di meha îlonê de Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî, Hevserokê PYD'ê Salih Mûslim û rayedarên pilebilind ê DYA'yê li Hewlêrê li hev lom bûn û derbasbûna Pêşmergeyên Roj a ji bo Rojava jî tê de li ser gelek xalan lihevkirin pêk hatin. Lê belê ew biryar ji Qendîlê vegeriyan. Li hêla din operasyona Mûsilê divê beriya ya Şengal'ê bihata kirin. Piştî Şengal'ê jî diviya bû Telafer û navenda DAIŞ'ê Kesk bihata rizgarkirin û bi dû re jî ew ê dor bihata ser Mûsilê. Divê di destpêkê de dorûbera Mûsilê bê rizgarkirin. Sedema destpênekirina vê operasyonê ne neamadebûna Pêşmergeyan e sedema wê Artêşa Iraq'ê ye. Li bajarekî ku ji sedî 70 wî ji erebên Sunne pêk were û hejmara wî 3 milyon be û operasyona Pêşmergeyan ew ê nerazîbûnê bi Sûnneyan re çeke. Her wiha di demeke wisa de ku DAIŞ lawaza bûye de pêk nehatine operasyonan ji ber neamadebûna Artêşa Iraqê ye û hejmara zêde ya Artêşê jî ji Şîeyan pêk tê ev jî dibin sedema pêk nehatine operasyonê."

# Li Rojava amaderkariyên Raqqa'yê

**Mehmet Salih Batırhan**



Li Rêveberiya Rojava, rojev li dijî DAIŞ'ê ve dagirtiye û hêzên kurd amadekariyên operasyonên Reqqa û Cerablûs'ê dikin. Li hêla din piştî ragihandina xweseriya demokratîk a Girêspî Serokkomarê Tirkiye'yê Recep Tayyip Erdoğan gef li PYD'ê xwar û got " Çi hewcebe ew ê bêkirin" piştî gefên Erdoğan Artêşa Tirkiye'yê êrîşî kurdan YPG'ê kir. Çavder û pisporên ku li ser êrîşa Tirkiye'yê ya li dijî YPG'ê rawestiyan amaje bi wê yekê dikin ku ew ê DYA'yê û Rûsya li hember êrîşan rawestin û ew ê qebûlnekin ku Tirkiye êrîşî Rojava bike û mebesta Tirkiye'yê ew e ku navê PYD'ê û YPG'ê bi terorê derxe. Li hêla din fişar û pêkûtiyên PYD'ê yên li ser partiyên din Rojava jî berdewam dike.

**"Dema êrîşan watedar e"**

Nûçegihanê ajansa Spûtnîk'ê Hîkmet Durgun, geşedanên li herêmê ji bo BasNûçe'yê şîrove kir û da zanîn ku Artêşa Tirkiye'yê di herêma sinorê Akçakale ya Bakur de di nav liv û tevgereke balkêş de ye û 24 û 25'ê cotmehê de Artêşa Tirk sengerên YPG'ê yên Girêsipî bombardûman kiriye. Durgun, êrîşên Artêşa Tirkiye'yê yên beriya hilbijartinên 1 mijdarê watedar da zanîn û diyarkir ku AKP dixwaze bi van êrîşan dengên nîjadperestan bi dest bixe. Durgun got hêzên kurd bersiva êrîşên Artêşa Tirk nadin û her wiha aliyê Rojava fikra êrîşane a ji bo Tirkiye tune ye.

**"Tirkiye'yê helwesteke êrîşane nîşan dide"**

Nûçegihanê ajansên Yakındoğu Haber û Taha Haber'ê Ferhat Aktaş jî bûyerên dawî ji bo BasNûçe'yê şîrove kir. Aktaş li ser polîtîkayên nû yên Tirkiye'yê rawestiya û bal kişand ser êrîşên Tirkiye'yê yên li Girêspî. Aktaş ragihand ku Tirkiye dixwest bi rêya komên îslamî yên tundrew re hêzên kurdî têk bibe, lê nikarîbû bi serkeve. Her wiha Aktaş da zanîn ku Tirkiye êdî bi awayekî yekser beşdarî şerê li dijî kurdan bûye û wiha berdewam kir: "Piştî hat zanîn ku şikestinê hêzên kurd ne mumkûn e, Tirkiye bi hêza xwe ve êrîş kurdan kir. Polîtîkayên Tirkiye'yê yên Sûriye'yê têkçûn û daxwaza Tirkiye'yê ya 'herêma tanpon' û 'herêma qedexe a ji bo balefiran' bê bersiv ma."

**"Tirkiye gefan dixwe"**

Piştî fermana Serokwezîrê Tirkiye'yê Ahmet Davutoğlu û Serokkomarê Tirkiye'yê Recep Tayyip Erdoğan gef li hêzên kurd ê li Rojava xwarin Artêşa Tirkiye'yê dest bi êrîşê kir. Her wiha li herêma bakurê Rojava li Cerablus-Azez'ê li ser sînorên Rojava û Bakurê Kurdistanê jî liv û tevgereke dijwar dest pê kir. Piştî êrîşa Tirkiye'yê Davutoğlu diyar kir ku Tirkiye'yê ta niha jî bi temamî rola xwe ne lîstiye û gawa ku bi temamî rola xwe bilîzê her tişt gelek cuda be. Davutoğlu gef li PYD'ê xwar û got,"Bila her kes li gorî xwe gavan biavêje." Erdagan jî bi heman şêwazê anî ziman wiha gef li PYD'ê xwar: "Bûyerên li Bakurê Iraq'ê pêk hatin nabe ku li Bakurê Sûriye'yê dubare bibin û em destûrê nadin." Erdoğan û Davutoğlu,bi vî şêklî diyar kirin ku ew destkftiyên kurdan qebûlnakin û ew bi destkeftiyên kurdan acizin. Li ser gefên Serokwezîr Davutoğlu û Serokkomar Erdoğan û êrîşên Artêşa Tirkiye'yê Wezîrê Karên Hundir ê Kobanê Bozan Xelîl ji BasNûçe'yê re axivî û got çi wateya gefê Tirkiye'yê nîn e û ev bû çar sale ew li dijî komên tundrew ên Îslamîst şer dikin û ew ê êrîşê ser kurdan bê bersiv nebinin.

**"DYA'yê û Rûsya nerazî ne"**

Bozan Xelîl diyar kir ku piştî YPG'ê Girêspî ji deste DAIŞ'ê rizgar kir, di heman deme de Tirkiye'yê dest bi êrîşan kiriye û dixwaze YPG'ê proveke bike. Xelîl, ragihand ku ew ê hêzên kurd bersiva Artêşa Tirkiye'yê nedin û ew dizanin ku dê piştî hilbijartinan Hikumeta AKP'ê serdestiya xwe winda bike û vê yêkê tu car nayên lîstokên wan. Xelîl, amaje bi wê yekê jî kir ku DYA'yê û Rûsya ji êrîşên Tirkiye'yê acizin û wiha berdewam kir. "Hêzên kurd DAIŞ'ê têkbirin û hemu dinya jî şahidê wan e. Her wiha DYA û Rusya êrişên Tirkiye'yê nerazîne û nerazîna xwe jî anîne zimên. DYA û Rusya piştgiriya xwe ya ji bo kurdan tînin ziman û alikariya kurdan dikin."

**"Divê kurd stratejiyek netewî bişopînin"**

Akademîsyen Yrd. Doç. Dr. Ekrem Önen ku rûdanên heremê ji nêz ve dişopîne, operasyonên Rusya yên Sûriye'yê û operasyonên ku DYA'ê li Mûsil a Iraq'ê didomîne, ji rojnameya Bas Nûçe'yê re nirxand û da zanîn ku DYA'yê di 20 salên dawîn de li Rojhilata Navîn polîtîkayek aktîf birêvebir û bi kurdan re tiffaq pêk anî. Önen her wiha da zanin ku tekanê hevpeymanê kurda ye û kurdan hevpeyman bûna DYA'yê baş bikaranî û divê kurd geşedanên Rojhelata Navîn baş bişopînin û kurd xwediyê strateji û siyasetek netewî bin. Önen,her wiha bal kişand ser rûdanên li herêmê jî û amaje bi wê yekê kir ku eger kurd baş tevbigerin dikarin ji qeyranan mifayê werbigrin.

# Li Kobanê bavekî bo protesoya YPJ'ê xwe şewitand!

Li hêla din li Rojava li dijî kiryar û siyaseta PYD û YPG li hin deveran alozî û protesto derdikevin. Li bajarê Kobanê kesekî bi navê Faysal Mustafa ku keça wî ji aliyê YPG'ê ve bi yasaya leşkeriya neçar hatibû birrîn, ji bo protestokirina vê kiryarê li ber avahiya rêvebiriya bajêr agir bera xwe da. Mustafa gotiye ku, ji bona keça wî ya tevlî YPJ'ê bûye vegerînê malê daxwaz ji rêvebiran kiriye û rayedaran bersiva wî nedaye û wî jî weke protesto ew çalaki pêk aniye. Hat zanîn ku Faysal Mustafa anîne Bakurê Kurdistanê Zanîngeha Tipê ya Meletiyê û li wir tê dermankirin û rewşa wî nebaş e. Heta niha YPG û YPJ'ê derbarê mijarê de daxûyaniyek belavnekiriye. 2 kurê Faysal Mustafa jî di refên YPG'ê de ne.

Demeke berê jî li Silêmanî welatiyek ji ber ku zarokên bi zorê bo leşkeriyê hatibûn şandin, li ber nûneriya PYD'ê li Silêmaniyê xwe şewitandibû.

**Leşkeriya neçar dibe hokara koçberiyê**

Li aliyê din hêzên Asayîşa PYD'ê ne li herema Cezîre ya Rojava di bin navê "yasaya leşkeriya neçar" cîvanan hêji digre leşkeriyê. Hat hînkirin ku hêzên asayîşê li bajarê Amûdê birayên bi navê Barzan û Omer Qarno bi zorê ji mala wan girtin û birin leşkeriyê. Rojnameger Hamed Emîn da zanîn ku gelê Rojava nerazîne û balêkişand ser hêzên asayişa girêdayî PYD'ê û qanûna bi navê "leşkeriya mecbûrî" û got, hêzên asayîşê li herema Geraga,Taxa Xeto û Nasir a girêdayî Hesekê ye, 150 cîvanan bi zorê girtiyê leşkeriyê. Hamed Emîn wiha berdewam kir: "Li herêma Cezîre'yê bi girtina cîvanên kurdan ya leşkeriya mecbûrî gel bertekên xwe nîşan dide û qanûna PYD'ê ya leşkeriya neçar gelê kurd mecbur dihêle ku koçber bibin."

**Perwerdeya îdolojîk bu sedemê protestoyê!**

Li aliye din awayê perwerdeya dibistanan jî li Rojava dibe sedemê aloziyê. Malbatên li Girgê Legê xwepêşandan kirin xwestin ku li gel perwerdeya kurdî ya bi erebî û îngîlîzî hebe. Malbatên ku perwerdehiya kurdî diecîbînin jî bertekên xwe jî anin ziman ku perwerde li dibistanan îdeolojîk e û fikrên Serokê PKK'ê Abdullah Ocalan li ser zarokan tê ferzkirin û bertek nîşan dan. Rêvebirê Partiya Demokrata Suriye (PDKS) Biradost Kemal li ser xwepêşandana gel ya ku li Girkê Legê hat kirin rawestiya û ji rojnameya me re axifî. Li gor Kemal, gel naxwaze zarokên xwe bişîne dibistanan û PYD ji bona perwerdeyê mufredatek îdeolojîk amade kiriye. Kemal anî ziman ku mufredata ku PYD'ê amade kiriye ne çawaniyek netewî ye, mufredatek îdeolojîke û di dersan de doktrînên PYD'ê û Serokê PKK Abdullah Öcalan li ser zarokan tê ferzkirin.

Li hêla din hat zanîn ku asayişa bi ser PYD'ê veye li li bajarê Til Temir li Rojavayê Kurdistanê ofisa Partiya Yekîtiya Kurdî (PYKS) girt. Endamê Komite ya Navendî Ya Partiya Yekitiya Kurdî Behçet Şêxo ji rojnameya me re axivî û eşkere kir ku endamên asayişa PYD'ê beyî destnîşankirine tu hincetan ofisa partiya wan girtiye û ew bi kiryareke der hiqûqî re rû bi rû ne.


Protestoyên dijî PYD'ê



Faysal Dağlı

## Li bin sîbera dîrokê Rûsya û Kurdistan

# Rûsya û kurdên diyasporayê



Sirgûn û xerîbî di dîroka kurdan de wek dû êşên cêwîk hertim bi wan re geriya ye. Di folklor û çanda kurdan de ev herdû êş tevî hesreta azadiyê wek mora dilê wan bi sedan sale cîhê xwe yê xemgîn parastine.

Di nav kurdan de dema behsa sirgûn û xeribiyê tê kirin, kurdên Rûsya, Qafqasya û Asya ya Navîn tên bîra herkesî. Hebûn û cîhwariya kurdan li Qafqasya xwedî mêjûyekî gelek kevnar e. Hîn di dema Împaratoriya Med de gelek eşîrên kurd bi taybetî li Azarbeycan û Ermenistan'ê bicîh bûbûn û hebûna kurdan ya girseyî ya liser xaka Azarbeycan a îro heta salên 1000'î domiyaye. Bi taybetî Naxçîwan beşek ji Kurdistan'ê hatiye naskirin.

Piştî dagira êlên tirk yên heremê herçend kurdan berê xwe dan başûr jî hin eşîrên kurd li heremê hebûna xwe domandin. Bapîrên Salahadîn Eyûbî ku bi navê Şedadî tên naskirin di van salan de li Azarbeycan a îroîn bi navê Şedadan dewletekî jî damezirandine.

Têkiliya kurdan û rûsan di serê sedsala 19'an de destpêkir. Di destpêka salên 1800'an de ku Împaratoriya Rûsya berbi Qafqasan ve belavbû, têkilî bi kurdan re danîn. Piştî dagira rûsan ya Ermenistan, Gurcistan û Azarbeycan'ê kurdên heremê jî tevlî nav sînorên vê dewletê bûn û xetên siyasî ketin navbera wan û Kurdistan'ê.

Artêşa Rûs di navbera salên 1813 û 1823'an de Gurcistan, Ermenistan û Bakûrê Azarbeycan'ê dagir kiribû û Rusya bûbû cîranê Kurdistan'ê.

Pevçûnên pêşîn yê şerê cîhanê li Rojhilata Navîn li Kurdistan'ê destpêkirin. Dengê tivingan cara evil li Kurdistan'ê bilindbûn. Bi destpêka şer di sala 1914'an de Artêşa Rûs berê xwe da Kurdistan a di bin destê osmaniyan de.

Piştî ku li Rûsya Bolşewîkan dest danîn ser îktîdarê di sala 1918'an de leşkerên rûs jî hemû Kurdistan û Îran'ê vekişiyan. Bi vî awayî serpêhatiya rûsan ya li xaka Kurdistan'ê bidawî bû.

Tevî leşkerên rûs, gelek eşîrên kurd yên di bin tehdîda osmaniyan de bûn jî derbasî xaka Rûsya bûn. Di nav wan de ji Serhed'ê heta herema Amed'ê eşîrên êzdî jî hebûn.

Bi vî awayî di serê sedsala 20'an de hijmara şêniya kurdên Rûsya'yê gihîştibû nêzî nîv milyonî. Kurd hingê li komarên Ermenistan, Azarbeycan û Gurcistan'ê niştecih bûbûn.

Li aliyê din Kurdistan piştî şerê cîhanê bûbû çar perçe û li Rûsya jî dema Sovyet'ê destpêkiribû. Êdî li her perçê Kurdistan'ê rejimekî cuda û li her perçeyekî dewletekî dagirker hebû. Di 13'ê Cotmeha 1922'an de jî li Qers'ê Ermenîstan bi awayekî fermî di nav Sovyet û Tirkiyê de hat dabeşkirin. Rejima Bolşewîk peymanek wiha bi rejima Tehran'ê re jî morkiribû. Sovyet'ê, dixwest ku, sînorên Tirkiye û Îran'ê ewle bike. Ew bi pirsgirêka Kurdistan'ê re eleqedar nebin, wê rejimên Enqere û Tahran'ê jî, li dijî Moskova'yê bi îngîlîzan re neketina hevkariyê. Li gor baweriya serdestên Moskova'yê, Brîtanya li dij Sovyet'ê wek heremeke tampon duxwest dewletekî kurd damezrîne.

Li aliyê din Partiya Komunîstên Tirkiyê û Komîntern'ê jî bi sifetên "paşverû" behsa tevgera netewî ya kurdan dikirin.

Rejima Moskova'yê di serhildana Şêx Sêîd ya sala 1925'an de bi awayekî manewî û di serhildana Ararad'ê ya sala 1930'an de de wek awayekî fermî alîkariya Dewleta Tirk kir. Sînorê xwe ji serhilderên kurd re girtin û leşkerên rûs jî tevlî tirkan li dijî kurdan şer dikirin.

Li alîyê din Stalin di dema vê serhildanê de otonomiya kurdên Sovyet'ê jî ji wan stendibû. Rengê têkiliyên Sovyet'ê yên bi kemalîstan û bi Şahên Îran'ê re qedera kurdên Sovyet'ê jî diyar dikir.

### Damezirandina Kurdistan a Sor

Piştî serkeftina şoreşa Bolşewîk, mafên netewî û entîkî yên gelên Sovyet'ê hat dayin. Serokê Sovyet'ê Lenin ji bo mafên kêmnetew û gelên kêmhijmar jî hin tedbîran stendibû. Kurdên Sovyet'ê jî di dema şorêşê de li herema xwe piştgiriya Bolşewîkan kiribû û vê yekê bala şoreşgeran kişandibû û bûbû sedem ku serokên şoreşa cotmehê mafê kurdan jî bibîr bînin. Bi vî awayî bi fermana Lenin di sala 1923'an de di nav sînorê Azarbeycan'ê demê dê di navbera Qerebax û Ermenistan'ê de li navçe ya Laçîn'ê bi navê Kurdistan a Sor heremeke otonom hat damezrandin.

Herema otonom ya Kurdistan a Sor ji navçeyên Qereqişlax, Qotirlî, Kelbecer, Kûbatlî, Kurtgacî, Mûradxanlî pêk dihat. Peytext jî bajarê Laçîn'ê bû. Hingê li heremê şêniya kurdan li gor hijmarên fermî 48 hezar bû.

Serokê Kurdistan a Sor ya otonom Hacî Kutsîyev bû. Bi damezrandina vê herema otonom di nav kurdan de hevîyên nû şaxdabû. Bi vî awayî kurdên ku li komarên cîran yên Ermenistan, Azarbeycan û Gurcistan'ê jî ketibûn tevgerê.

Bi navê Kojnameyî Kurdistan a Sovyet'ê organekî fermî û radyoyekî dest bi weşanê kiribû. Heta lîseyê zarokên kurd bi zimanê xwe duxwendin. Li bajarê Şûş'ê enstîtûyekî zimanê kurdî û sendîqayekî nivîskaran hatibû hatibû damezradin.

Di sala 1923'an de Serokê Yekiya Sovyet'ê Vilidamir Îlyiç Ulyanov Lenin, ji serokê Azarbeycan a Sovyet'ê re telgirafekî şandibû. Di vê telgirafê de Lenin ferman dida serokê Azarbeycan'ê Nerîman Nerîmanov û digot; "Ji bo xizanên Kurdistan'ê 40 milyon Rûble alîkarî bikin." Ev telgiraf yekta belge ye ku Lenin behsa Kurdistan'ê kiriye.

Demek kin piştî şandina vê telgirafê Lenin ji ber sedemê nexweşiyê di sala 1924'an de jiyana xwe wendadike û Stalin ku ji dêlve wî ve derbasî ser textê Moskova'yê dibe, ev butçeya Kurdistan a Sor ji Ermenistan'ê re verêdike.

Desthilatdariya Sovyet'ê êdî ketibû destê Stalin. Tekiliyên Stalin bi tûranîstên azerî te baş bû. Bi taybetî serokê Azarbeycan'ê Neriman Nerimanov ku dijberiya kurdan dikir, di siyaseta Qafqasan de wek şûrê Stalin bû.

Ev otonomiya kurdan di sala 1929'an de ji alî Stalin ve ji holê hat rakirin. Mafên etnîkî yên wek perwerda zimanê zikmakî û weşana radyoyê jî hatibû rawestan. Li aliyê din têkiliyên Sovyet'ê û Tirkiyê di heman salan de gelek baş bû. Stalin, tevgera kemalîst wek "dij-emperyalîst" dinirxand. Herwiha

komunîstên azerî yên tûranîst jî li dij tevgera kurd bi kemalîstan re hevkarî dikirin. Ji ber vê yekê di dema serhildanê de leşkeren Sovyet'ê yên ser sînor tevî Artêşa Tirk li dijî serhilderên kurd yên Ararad'ê operasyonên hevbeş dikirin. Di encama van têkiliyan de rejima Stalin, bi destê tûranîstên azerî mafê kurdên heremê ji destên wan girtîn û dawî li otonomiya Kurdistan a Sor anîn.

Erişên azeriyan piştî ruxandina Kurdistan a Sor jî domiya û li heremê di bin navê "taqîbata eşkiyayan" gelek kurdên sivîl ji aliyê leşkerên azerî vê tên kuştîn. Ev qetlîam di dîrokê de wek "Qetlîama Eşîra Eliyan" tê naskirin.

Dema ku tûranîstên azerî dawî li otonomiya Kurdistan a Sor anîn, li Ermenistan'ê di pirsgirêka mafên netewî yên kurdan de hin pêşketin rûdan. Di heman salî di 25'ê Adarê de li Ermenistan'ê bi navê Rêya Taze rojnameyekî dest bi weşanê kir. Ev rojname ji hingê vê bê navber weşana xwe didomîne. Di sala 1934'an de kongre ya yekem ya Kurdolojiyê li Erîwan'ê civiya. Pirtûkxane ya kurdî ya ji Azarbeycan'ê bo Erîwan'ê tê barkirin. Bi vî awayî Ermenistan dibe navenda Kurdolojî ya nûjen.

**Sirgûna kurdan bo Asya ya Navîn**

Di sala 1937'an de Stalin careke din li dij kurdên Sovyet'ê ket tevgerê û vêca dest bi zilmeke nedîti kir. Kurdên ser sînorên Tirkiye, Naxcîvan û Azarbeycan'ê sirgûnê Asya ya Navîn kir. Bi dehhezan kurd li deşt û bajarên Kazaxistan, Kirgizîstan, Ozbekîstan û Turkmenîstan'ê tên belavkirin.

Alîkarê Stalin vê carê tûranîstekî din serokê Azarbeycan'ê yê nû Mîr Cafer Bagirov bû. Pîlana sirgûnê ji alî wezîrê karê hindirîn Lavrenty Beriya ve hatibû kirin. Di dema sirgûnê de gelek kurd jî ji alî leşkerên Sovyet'ê û azeriyan ve hatibûn kuştin. Di van kiryaran de jî Bagirov rola sereke dilîst.

Di sala 1939'an de li gor îstatîstîkên fermî yên Sovyet'ê li Naxçivan û Azarbeycan'ê 3 hezar kurd tenê mabûn. Azeriyan wek Komara Tirkiyê li dij kurdan asîmilasyonê jî pêk dianîn.

Sirgûna dûyem jî di sala 1944'an de hat. Vê carê kurdên Ermenistan û Gurcistan'ê hatin sirgûnkirin. Hinceta Stalin ya vê carê jî şerê cîhanê yê dûyem bû. Wî dixwest hemû kêmnetewên musluman yên ser sînorê Tirkiyê ji holê rake. Qaşo xeter hebû ku muslumanên ser sînorên Sovyet'ê bi almanan re têkilî deynin.

Di dema vê sirgûnê de jî Rojhilatê Kurdistan'ê ji alî Sovyet'ê ve hatibû dagirkirin û kurdên Îran'ê di bin serokatiya Qazî Mihemed de ji bo bigîjin mafên xwe yên netewî rêxistina Komelayê Jîyanewe damezirandibûn û ji bo dewleteke serbixwe dixebitîn. Helbet astenga wan dîsa serokê Azarbeycan a Sovyet'ê Mîr Cafer





Bakirov bû. Bakirov dixwest Rojhilatê Kurdistan'ê bi Azarbeycan a Îran'ê û wê derê jî bi Azarbeycan a Sovyet'ê ve girêbide.

Kurdên ku ji alî rejima Stalin ve sirgûnê Asya ya Navîn hatibûn kirin, bi dehan sal di bin şertên esaretê de jiyan. Her malbatek li gundekî hatibû belavkirin. Mafên wan yên hemwelatiyê ji destên wan hatibû stendin. Zarokên wan nikaribûn herin dibistanan û ew jî nikaribûn derkevin dervayê gund û heremên sirgûnê. Bi dehan sal gelek malbatên perçebûyî ji hevûdû bêxeber man.

Di vê navberê de di sala 1947'an de piştî rûxana Komara Kurdistan'ê, Mele Mistefa Barzanî tevî 500 şerwanên kurd xwe sipartibû Sovyet'ê. Moskova'yê kurdên penaber jî wek yên din li sirgûnê Asya ya Navîn kiribû û 11 sal wan di rewşa esaretê de hiştibû. Stalin ji bo berjewendî û têkiliyên xwe kurdan kiribû qurban.

**Vegera kurdan**

Ev zilma Sovyet'ê heta piştî piştî mirina Stalin ya 1953'an domkir. Zextên ser kurdan piştî sala 1960'an sivik bûn. Piştî mirina Stalin, Bakirov ê tûranîst ji ber kiryarên xwe yên qirêj ji alî rejima nûh ve tevî gelek hevalên xwe hat tasfiyekirin. Bi vî awayî kurdên sirgûnkirî carekî din rûyê rojê dîtîn û qismek ji wan yên ku ji Ermenistan'ê hatin sirgûnkirin, vegeriyan cîhwarên xwe yên kevn. Azerî û gurciyan vegera kurdan qebûl nekir. Gelek ji kurdên sirgûnkirî li deverên ku hatibûn sirgûnkirin man.

Di Kongre ya 20'an ya Partiya Komunîst a Sovyet'ê ya sala 1956'an de serokê nû Kruşev kiryarên Stalin mahkûm kiribû û hevalbendên wî tasfiye kiribû. Bi vî awayî ji bo gelên sirgûnkirî û bêparên mafên etnîkî hêviyeke nûh rûdabû.

Kurdên sirgûnkirî, di sala 1961'an de heyetekî sazkirin û ji bo bidestxistina mafên xwe berê dan Moskova'yê. Komeke ku ji 9 kesan pêk dihat di bin serokatiya Mihemed Babayev de tevî Temûrê Elî, Husênê Nebo, Mihemed Emîn Ezîz, Husênê Sadikov û Çerkezê Beko li Moskova bi sekreterên Krûşev, Vader û Şumonsky re rûdinin. Şande ya kurd, ji rayedarên Sovyet'ê re behsa zilma ku hatiye serê wan dikin û doza mafê gelê kurd dikin.

Kurd ji Sovyet'ê cîhekî ku bi giştî û li kêleka hev bijîn duxwazin û mînaka Kurdistan a Sor tînin bîra wan. Li gor rayedarên Kremlîn'ê, bicîhkirina kurdan ya herema Laçîn'ê wê bi Azarbeycan û Ermenistan'ê re pirsgirêkan derxista û ji ber vê yekê wan behsa navendên otonomiya çandî dikir. Ew amade bûn ku li Kirgizîstan, Azarbeycan, Kazaxistan û Tirkmenîstan'ê 6 navendên otonomiya çandî bidana kurdan. Lê kurd jî vê yekê qebûl nakin û ji vê hevdîtinê tiştek dernakeve.

**Rûxana Sovyet'ê û kurd**

Bi vî awayî serpêhatiya kurdên Sovyet'ê heta rûxana vê dewletê bi vî awayî dimeşe. Piştî siyaseta prestroyka û glasnost ya Gorbaçev rewşa kurdên Sovyet'ê ji dikeve pêvajoyeke din. Gel û welatên heta wê demê di bin sîstema Sovyet'ê de gihîştibûn hevûdû yeko yeko ji Sovyet'ê vediqetiyan. Êdî li ser xaka Sovyet'ê dema dewletên netewî û nakokiyên etnîkî destpêkiribû.

Herema Laçîn'ê ku wek nawenda Kurdistana Qafqasya bû di nav xaka Azarbaycanê de dima û di navbera Ermenistan û Qerebaxê de wek pirekî bû.

Piştî destpêka nakokiya navbera herdû komaran, ermeniyên Azarbeycan'ê û azeriyên Ermenistan'ê ji malên xwe hatin qewirandin. Di nav azeriyên Ermenistan'ê de 20 hezar kurdên musluman jî ji Ermenistan'ê hatin sirgûnkirin. Koçberên nûh, li Kazaxistan, Rûsya û Azarbaycan'ê belavbûbûn. Dîsa di sala 1990'an de li Kirxizistan'ê gundên kurdan bû hedefa êrişên hêzên fermî û bi sedan malbat ji cîhwarên xwe hatin qewirandin û derbasî Kazaxistan'ê bûn. Heman rewş li Ozbekistan'ê jî rûdabû û bi hezaran kurd, ji ber zextan reviyabûn Rûsya û Kazaxistan'ê. Li aliyê din di heman wextî de li bajarê Rûsya Qirasnadar'ê jî gelek Kurd ji xaniyên xwe hatibûn avêtin û bêcîh mabûn. Li ser xaka Sovyet'ê cîh ji kurdan re tengbûbû.

Li ser vê rûdanê, serokên kurdên Sovyet'ê xetera li ber xwe dîtin û ketin tevgerê. Wê Sovyet belavbibûya û kurd wê ji cîhên ku hatibûn sirgûnkirin jî bihatana qewirandin û bêwar bimana. Bi vî awayî pevajoya damezrandina rêxistineke netewî û lêgerîna welatekî ji bo Kurdan destpêkiribû. Kurdên Sovyet'ê careke din berê xwe dabûn Kurdistan a Sor.



## Nûnerê PYD'ê Sîhanok Dîbo:

# Ji hebûna desth

**Peywendiyên me bi biraderên YNK'ê re gelekî baş in. Peywendiyên me bi PDK'ê û Tevgera Goranê jî re gelekî baş in. Di heman demê de danûstendinên me bi KCK'ê jî re baş in. Eger em dîplomasiya di navbera xwe de xurt bikin û em kare hevdû hêsan bikin ew ê hêza me xizmetê ji Kurdistan'ê re bike. Ew ê hêza ne bi tenê ji Qamişlo re di heman demê de ew ê ji Mahabad, Amed û Hewlêr'ê jî re bike. Ew ê were bîra we beriya bi çend hefteyan kongreya me bi rêveçû. Kongreya me weke kongreyeke Kurdistan'ê bi xwe bû.**

**Siwar Bedirxan**

Operasyonên Rûsya'yê yên li Sûriye'yê kir ku rejima Beşar Esad ji nû ve bi hêz bibe û komên tûndrew ên îslamî şikestinên mezin bixwin. Bi operasyonên Rûsya'yê re Artêşa Sûriye'yê jî operasyoneke bejayî da dest pê kirin û li derdora perava Deryaspî gelekî bi pêşde çû. Li hêla din dewleta Tirkiye'yê ya ku hemû stratejiya xwe li ser ruxandina rejima Esad avakiribû jî negihişt armancên xwe û dest bi hewldanên nû kir. Hewldana nû ya Tirkiye'yê êrîşa li ser hêzên kurd bû. Berpirs û Şêwirmendê Desteya Karên Derve yê PYD'ê Sîhanok Dîbo li ser geşedanên dawî ,êrîşên Tirkiye'yê yên li ser hêzên YPG'ê û dîplomasiya PYD'ê ya bi cihanê re rawestiya û ji BasNûçe'yê re axivî. Sîhanok bal kişand ser gefên Serokkomar û Serokwezîrê Tirkiye'yê û da zanîn ku Tirkiye, Rojava ji xwe re weke gef dibîne û ji hebûna Rojava aciz e.

**DAIŞ nêzîkî du salan li ser sînorê Tirkiye'yê bû. Piştî ku DAIŞ ji ser wan sînoran hat dûrxistin, herçend heta niha ji aliyê hêzên kurd li hember Tirkiye'yê fîşekek jî nehatibe teqandin jî çima piştî rizgarbûna Girêspî êrîşî hêzên kurd dike?**

Rast e, zêdetirî sê salan YPG an jî YPJ'ê ne li ser sînorê Bakûr û ne jî li ser sînorê Tirkiye'yê fîşekek jî neteqandine. Sînorên Bakur û Tirkiye'yê di bin ewlehiyeke mezin dene. Ev yek li ber çava ye. Xeter li wir çênebûye. Tirkiye dixwaze bi hincetan êrîşî ser me bike. Li hêla din sedemeke din jî heye. Îro koalisyona navdewletî ya ku DYA'yê pêşengiya wê dike di qadê de piştgiriya YPG'ê û YPJ'ê dike. Rûsya jî alîkariya YPG'ê û PYD'ê dike. Hikûmeta AKP'ê ji vê piştgiriyê bo kurdan aciz e. Di her kombûna navdewletî de li ser wê meseleyê radiweste û dixwaze PYD'ê û YPG'ê weke terorîst dest nişan bike.

Meseleyeke din jî heye divê ez wê jî eşkere bikim. Hemû cihan dizane di avabûna Komara Tirkiye'yê de hemû pêkhateyan li Tirkiye'yê di wê proseyê de cihê xwe girtin. Kurdan jî, xelkê laz û xelkê sûryan jî beşdarî avabûna Komara Tirkiye'yê bûn. Tirkiye'ya AKP'ê bi navê îslamgeriya nerm tevgeriya. DAIŞ mezin kirin. Komên tûndrew ji hêla Tirkiye'yê ve mezin bûn. Fikra wan jinûveavakirina osmanî ye. Lê belê gelekî ditirsin ew fikra wan bernameya wan têk diçe. Kurdan ji xwe re xeter  dibînin û êrîşî kurdan dikin. Di sîstema kurdan de hemû kemîne û pêkhate bihevre dijîn.

**Ew ê PYD û YPG li hember van êrîşên leşkeri helwesteke çawa nişan bide?**

Ev êrîş ev çar sal in hene. Ji êrîşa meha cotmehê ya 2012'an heta niha destê AKP'ê di êrîşan de heye. Bi komên çekdar ev çar sal in AKP êrîşî me dike. Lê belê piştî ku komên wan û rêxsitinên wan ê terorê têkçûn wan bi xwe dest bi êrîşan kir. Mebesta êrîşên wan ew ê ku destkeftiyên kurdan ji holê rakin û kurdan têk bibin. Îro kurd di dîplomasiya cihanê de di cihekî giring dene. Li Rojhilata Navîn guhertinên nû pêk tên. Kurd di navenda vê guhertinê dene. Tirkiye dixwaze kurdan weke rêxistineke terorê dest nişan bike û navê me bi terorê derxe. Lê belê hemû cihan dizane em li hember terorê şer dikin. Me terora komên tûndrew bi dawî kir. Me deng ji wan birî. Eger Tirkiye û rayedarên wê êrîşên xwe bidomînin ew ê her çar parçeyên Kurdistan'ê li hember xwe bibine. Ew ê piştevanên kurdan ê koalisyona navdewletî li hember xwe bimîne. Welatên mezin ên piştgiriya kurdan dikin jî ew ê li hember Tirkiye'yê rawestin. Em hêvî dikin ku ew êrîş bi dawî bibin. Em naxwazin di navbera me û cîranên me de şer û pevçûn çêbibin.

Helwest û gavên Hikûmeta AKP'ê ne yasayî ne. Hikûmeta niha ya li ser erka xwe ne hikûmeteke qanûnî ye. Li Tirkiye'yê hikûmet nehatiyê sazkirin. Hikûmeta qanûnî ya Tirkiye'yê ew ê piştî 1'ê Mijdar'ê ava bibe. Piştî hilbijartinan em dikarin bêjin êdî hikûmeteke yasayî heye. Temaşe bikin, piştî teqîna li Enqerê Serokwezîrê Tirkiye'yê Ahmet Davutoğlu ji bo êrîşên DAIŞ'ê yên ser Enqerê got; "DAIŞ li dijî xêra me derket" ji vê gotinê jî eşkere dibe ku peywendiyên DAIŞ'ê û AKP'ê gelekî xurt in. Serokwezîr Davutoğlu, Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan, di şûna ku peywendiyên xurt bi rayedarên Rojava re deynin li hember rayedarên Rojava li hember kurdan helwesteke nebaş nişandan. Wan ders ji dîrokê nestend. Li pêkvejiyana kurd û tirkan temaşe nekir. Rayedarên AKP'ê ji destpêka qeyrana Sûriye'yê piştevaniya komên terorîst kirin. Ji wan re çek û taqemenî şandin. Rê li ber wan vekirin da ku endamên wan ji ser Tirkiye'yê bêne dermankirin. Di vê çarçoveyê dikarin wê yekê tekez bikin ku ji aliye rêveberiya xweser a Rojava tu xeter  ji bo Tirkiye'yê çênaebin. Tirkiye ji PYD'ê û rêvêberiya xweser aciz e. Sedema wê yekê jî ew ê ku dizanin xelasiya Sûriye'yê bi jî plana xweseriya demokratik mimkûne. Bernameya xweseriya demokratîk ji xwe re weke xeter dibînin.

**Em dizanin DYA'yê hevalbendê PYD'ê ye. Her wiha Rûsya'yê jî piştgiriya xwe ya ji PYD'ê re eşkere kir. Di medyaya Tirkiyeyê de tê gotin ku DYA'yê li hember êrîşên Tirkiye'yê yên li ser Girêspî nerazîbûn nişan daye. Li ser vê meseleye danûstendinên we bi Rûsya û DYA'ê re çêbûn gelo?**

Piştek heye. Eger tu li dijî meşa dîrokê tevgeriya tê têk biçî. Eger tu kesayat jî be tê têk biçe, eger tu partî û dewlet jî be tê têk biçe. Perçebûnê çêdike. Piştî sala 1916'an ji Peymana Sykes-Picot heta niha tu gihertin çênebû li Rojhilata Navîn. Piştî Şerê Duyem ê Cihanê derket holê ku hem li Sûriye'yê li Îraq'ê û li Yemen û li Ûrdûn'ê jî hewcedarî bi guhertinan heye. Derket holê ku ew ê nexşeyên nû, welatên nû li Rojhilata Navîn derkevin holê. Em weke partiyeke siyasî ya kurdan di navenda van guhertinan de cih digrin. Bala xwe bidinê Serokê Rûsya'yê Vladîmîr Pûtin di Civîna Giştî ya Netewên Yekgirtî de qala serkeftinên kurdan ê li hember DAIŞ'ê kir. Pûtin eşkere kir ku tekane hêza ku DAIŞ'ê têk dibe hêza kurda ye. Li hêla din DYA'yê û koalisyona welatên rojava jî piştevaniya li hember kurdan tînîn ziman. Çi rayedarên siyasî û çi jî rayedarên leşkerî yên DYA'yê amaje bi wê yekê dikin ku hêza hevalbendê wan a li Sûriye'yê hêza kurda ye. Ji Koşka Spî bigre heta Pentagon'ê serkeftinên YPG'ê bilind tên nirxandin. Danûstendinên me her tim bi van welatan re heye. Em li ser her geşedanê qise dikin.

Ew ê were bîra we, di 24'ê Tîrmeh'ê de AKP'ê li derdora Cerablûs'ê li DAIŞ'ê da. Wê demê gelek balafirên şer ji Tirkiye'yê rabûn. Bi tenê sê balafiran li dorûbera baregahên wê rêxistinê dan. Blafirên din berê xwe dan kurdan. We hemûyan dît xelkê sivîl ê Bakûr û Başûrê Kurdistan'ê hatin bombardûmankirin. Êrîşên wan ê din jî ji xwe weke şanoyê bûn. Ev yek jî tê wê wateyê ku ev dewlet ev hikûmet li dijî jiyana hevbeş a gelan sekiniye. Ev hikûmet xelkê sivîl bombardûman dike.

**Beriya bi çend rojan we bi desteyeke bilind serdana Rûsya'yê kir. Ew serdana we ya Moskova'yê beriya ya Beşar Esad pêk hat û ev jî bû cihê gelek nîqaşan. Li hêla din hat zanîn ku wê PYD li Moskova, Parîs û Berlîn'ê jî nûnertî veke. Di warê dîplomasiya cihanê de helwesteke çawa li hember PYD'ê heye? Her wiha bi operasyonên Rûsya'yê re Esad jî dîsa bi hêz dibe. Gelo egera wê yekê jî heye ku di siberojê de Beşar Esad êrîşî kurdan bike?**

Nûnertiya PYD'ê li gelek welatên Ewrûpa heye. Li Belçîka, Fransa, Almanya heye. Li Rûsya'yê heye. Ew nûnertiyên ku ew ê li Paris, Berlîn û Moskova'yê vebin ne yên PYD'ê ne ew nûnertiyên rêveberiya demokratîk a Rojava ne. Hemû dîplomasiya cihanê şoreşa hêzên kurd a 19'ê Tîrmeh a 2012'an bilind dinirxînîn û piştevaniya wê projeyê dikin. Berjewendiyên hemû welatên Rojava di bernameyeke wisa de heye. Dîplomasiya cihanê bi germayî

# ilatdariya kurdan aciz in





nêzîkî wê proseyê dibe. Danûstendinan bi rayedarên Rojava re tên kirin. Hêzên kurd bi biryar in parastina kurdan bikin. Ez ne di wê baweriyê de me ku Esad êrîşî kurdan bike. Esad dixwaze wan komên tûndrew ji Sûriye'yê derxe. Lê belê ji ku dere êrîş were ser kurdan ew nayê qebûlkirin.

**Ez dixwazim êdî em li ser operasyonên leşkeri rawestin. Piştî şerê Kobanê DYA'yê jî di şerê li hember de piştgiriya YPG'ê kir. Bi hemahengiya DYA'yê YPG'ê gelek operasyonên serkeftî pêk anîn. Di navbera YPG'ê û Rûsya'yê jî de hemahengi û operasyonên hevpar dê pêk werin gelo?**

Operasyonên me li hember DAIŞ'ê û komên çekdar ev çar sal in hene. DYA'yê û koalisyona wê jî ev demeke dirêje li hember wan koman radiweste û li hember wan êrîşîên hewayî pêk tîne. Ew giring e. Lê belê êrîşên Rûsya'yê ji êrîşên DYA'yê cudatir in. Rûsya hemû komên çekdar dide ber xwe. Armanca wan ew ê komên çekdar û tûndrew ji holê rakin. Lê belê ji bo têkbirina komên tûndrew bi tena sere xwe operasyonên hewayî têr nakin. Pêdawîstî bi hêzên li ser rûyê erde heye. Hêzên kurd YPG û YPJ wî karî digrin ser mile xwe û wan komên tûndrew têk dibin. Têkbirina koman di warê dîplomasiyê de destê hêzên kurdan hem di warê leşkeri de û hem jî di warê siyasî de xurt dike. Em li ser wê yek difikirin ku Konseya Demokratîk a Sûriye'yê ava bikin. Ew ê hemû partiyên rêveberiya xweser jî di wê konseyê de cihê xwe bigrin.

**YPG û YPJ çima navê xwe guhert û li gel ew komên din ê li Sûriye'yê navê xwe kir Hêzên Sûriye'yê yên Demokratîk? Li hêla din operasyonên rizgarkirina Cerablûs û Reqqa'yê jî berdeam dikin ew ê ew operasyon kengî dset pê bikin?**

Bernameya xweseriya demokratîk bi tenê ne ji bo Rojava'yê Kurdistan'ê hatiye sazkirin. Ew ji bo hemû welatên Rojhilata Navîn ê. Di heman demê de ji bo xelkê Sûriye'yê. Partiyên siyasî yên Rojava li ser yekbûnê li hev dikin. Hêzên leşkeri jî navê xwe kirin Hêzên Sûriye'ya Demokratîk. Ew hêz ji aliye dîplomasiya navdewletî jî tê qebûlkirin. Armanca wê artêşa rizgarkirina hemû xaka Kurdistan'ê ye. Mebesta wan ew e ku DAIŞ'ê, El Nûsra'yê û komên din têk bibe. Li gor zanyariyên ku li ber destên me hene ew ê Hêzên Sûriye'ya Demokratîk di heman demê de hem li Cerablûs'ê û hem jî li Reqqa'yê li hember DAIŞ'ê operasyonekê bide destpêkirin û ew ê wan herdu bajaran bihevre azad bike. Ew koalisyona leşkeri tekez dike ku heta ku ew komên tûndrew li xaka Sûriye'yê hebin ew ê wan koman ji Sûriye'yê derxin.

**Em bên ser peywendiyên we û Başûrê Kurdistanê. Piştî kombûna Salih Mûslîm, Serokê Herêma Kurdistan'ê Mesûd Barzanî û rayedarên DYA'yê hat aşkerekirin ku ew ê Pêşmergeyên Roj ê bi ser ENKS'ê vene derbasî Rojava bibin. Piştre YPG'ê daxuyaniyek belav kir û di wir de tekez kir ku ew ê nehêlin Pêşmerge derbas bibin. Gelo çima hûn razî nînin ku Pêşmergeyên Roj jî derbasî Rojava bibin û di parastina Rojava û xelkê wê de bi erka xwe rabin?**

Di meseleyên giştî de divê em bala xwe bidine dîrokê. Em nikarin dîroka xwe biguherînin. Lê belê em dikarin ji siberojê bala xwe bidine dîrokê û ji mifayê werbigrin. Tecrûbeya Filistîn'ê, Lûbnan'ê heye. Di heman demê de tecrûbeya Başûrê Kurdistanê bi xwe heye. Li cihekî zêdetirî ji hêzêkê hebin encamên wê yekê dibin xwîn. Yekrezî çênabe. Encamên neaştiyane rû didin. Îstîkrar pêk nayê. Nabe ev tecrübe li Rojava'yê Kurdistan'ê jî bê kirin. Nabe zêdetirî hêzêkê hezeke din li Rojava'yê Kurdistan'ê bi cih bibe. Deriyê hêza kurdan ji hemû ciwanên kurd re vekiriye. Hemû pêkhateyên li Rojava di nav refên vê hêzê de cihê xwe digrin. Ev hêza niha heyî li hember DAIŞ'ê li hember rejima Baas'ê hebûna xwe hêza xwe îspat kiriye. Em qebûl nakin ku bi navekî din hêzeke din li Rojava hebe yan jî derbasî Rojava bibe.

Di warê dîplomasiyê jî de peywendiyên me bi hemû partiyên Kurdistan'ê re hene. Peywendiyên me bi biraderên YNK'ê re gelekî baş in. Peywendiyên me bi PDK'ê û Tevgera Goranê jî re gelekî baş in. Di heman demê de danûstendinên me bi KCK'ê jî re baş in. Eger em dîplomasiya di navbera xwe de xurt bikin û em kare hevdû hêsan bikin ew ê hêza me xizmetê ji Kurdistan'ê re bike. Ew ê hêza ne bi tenê ji Qamişlo re di heman demê de ew ê ji Mahabad, Amed û Hewlêr'ê jî re bike. Ew ê were bîra we beriya bi çend hefteyan kongreya me bi rêveçû. Kongreya me weke kongreyeke Kurdistan'ê bi xwe bû.

Welat Baz

# Bajarê kevnekurdên îlamî ABDANAN



Paşkoyê asê, welatê mirovên çiyayî, Emadî Îlam, paşsiya Koyî Xalagîran, bajarî Abdanan e. Xalagîran bi hezaran sal e şahidê şaristaniya xaka Îlamê ye. Abdanan a bin sîbera Zagrosan, çavkaniya bapîrên kurdan e.

**Rewebîrî**

Abdanan li gor pergala rêvebiriya Dewleta Îran'ê bajarekî Eyaleta Îlamê ye. Li eyaletê piştî peytext Îlam û Dehloranê bajarê herî mezin e.Ji bilî Abdanan'ê li eyaletê bajarên Darehşer, Dehloran, Şîrwan, Çardawol, Avyan, Melek Şahî û Mehran jî hene. Peytexta eyaletê Bajarê Îlamê ye. Bajarê Abdanan'ê di navbera eyaletên Kermanşa, Îlam û Loristan de cîh digre. Ji bakûr ve Şarê Mûsiyan, li başûr Pehle, li rojhilat; Dereşar û Bedre û li rojava jî Dehloran cîranê Abdanan'ê ne. Abdanan 181 kîlometere dûrî peytexta eyaletê Îlamê ye.

**Şenî**

Şêniya bajarê Abdanan'ê nêzî 100 hezari ye. Bi bajêr ve girêdayî çend navçe û gelek xopan û gund jî hene. Şêniya bajêr bi giştî kurd in. Li heremê piranî eşîrên lor û feylî dijîn. Îlam û Abdanan di warê axaftina zaravayên kurdî de, deverên pirrengin. Li eyaletê zaravayên goranî, lorî yanê feyli û kelhorî û gelek devokê van zaravayan tên axaftin. Li nav Abdanan'ê jî zêdetir zarava Lorî tê bikaranîn. Bajêr li nêzî sînorê eyaleta Loristanê cîh digre. abdananî bi giştî muslumanên şîa yên 12 îmamî ne. Li bajêr hin bawermendên ehlî heqî jî hene.

**Nav**

Di demên kevn de herem tevî ostana Îlam'ê ji alî kurdan ve wek Paşko dihat binavkirin. Abdanan jî navê xwe ji ava çemê Siyako girtiye. Navê bajêr tê wate ya 'cîhê ku li ser avê hatiye avakirin.'

**Erdnîgar**

Abdanan di navbera merîdyenên 32 û 56ê başûr û paralelên 47 û 28ê rojhilat de cîh digre. Firehiya xaka bajêr 2461 kîlometre çargoşe ye. Abdanan li pişt rêzeçiyayên Zagrosan li ser deştekî sersewz û berbilaw hatiye avakirin. Avhewa ya bajêr medîtranî ye ji ber vê yekê jî havînan hênik û zivistanan jî sar e. Bajêr herçend li ser deşteke fireh hatibe damezrandin jî derdora Abdanan'ê ji alî hin girên Zagrosan ve hatiye pêçan. Girên derdora bajêr li hin deveran digijîn 1200 metre yi. Xaka bajêr ji deryayê 740 metre bilind e. Girê herî berz yê derdora Abdanan'ê Kewî Kewerko û Kewî Dînarko ne.

**Şikeft**

Girên derdora bajêr ku xelekên Zagrosan e, ji zinnarên nerm pêk tên. Bi vî awayî ji bo kolan û jiyanê destdane. Şikeftên Siyako, li jora çem û li binê Piştqelê di zinnarên Dînarko da peyda bûne. Ev şikeft bi awayekî xwezayî peyda bûne lê hinek ji wan, bi destê însanan hatine edilandin. Dîroka şaristaniyê li ser xaka Abdanan'ê jî wek ya hemû herema Îlamê dirêjî heta hezarsala 6an ya berî zayînê dibe. Herem ji ber ku li ser reyên bazirganiyê cîh girtiye, hertim şên bûye.

Rêçên ku di şikeftên derdora bajêr de hatine dîtin, amaje dike ku li heremê di dema kevirîn de jî jiyan hebûye û însanên kevn li van devera jiyane. Ev şikeftên bajêr ji alî gelek tûrîst û meraqdaran ve jî tên ziyaretkirin.

**Dîrok**

Îlam ku Abdanan jî di nav sînorê wê de ye, ji alî hin dîroknasan wek Anzan tên binavkirin. Ev şaristanî di dîroka mirovahiyê de yekem dewleta federatîf bûye û bi navê Lolobî jî hatiye nasakirin. Ev şaristanî di serê hezarsala 3êm ya berî zayinê li Kurdistanê, li quntarê Zagrosan ava bûye û sînorê wê gihîştiye heta Hindîstanê. Îlamî wek nîjad tevî Lolo, Qasîd û Gotiyan wek miletekî Zagrotîk û Aryenî tên binavkirin. Zimanê van hemû şaristaniyan yek e. Dîrokzan Husîng û Speiser îlamiyan wek "lor" û loran jî beşek ji netewa kurdan binavdikin. Dewleta Îlam'ê berî zayînê di salên 640'an de ji alî asûriyan ve hatiye ruxandin. Piştî ku desthilatiya Madan li Îran'ê belav bû, Îlam di vê împaratoriyê de wek ostana girîng ya sêyem û otonom hebûna xwe domand.

Ev statuya heremê di dema Pers û Selokîdan de jî ajot. Bi taybetî di dema Îskender û Selokîdan de Îlam tevî Abdanan'ê nawendeke siyasî û çandî bû. Piştî damezrandina Dewleta Sasanî jî, Abdanan jî tê de herem bûye nawendeke olî û siyasî. Ji ber vê yekê li erdîmê gelek berhemên dîrokî hatine avakirin. Piştkele û Hezarderî ku ji hingê ve mane û mînakên girîngiya heremê ne, hîn jî li ser piya ne.

Abdanan piştî hukumdariya sasaniyan ketiye destê erebên musluman û paşê jî sefewiyan heremê dagir kirine. Piştî sedsala 10'an mîrên kurd yên Lor rêvebiriya heremê bidest xistine. Di serê sedsala 17'an de di dema saltanata Xaçaran de Kerîmxan, ku li heremê serekeşîrê xanedana Zendiyên Kurd bû, textê Îran'ê bidest xistibû û bûbû Şahê Îran'ê.

**Piştkele**

Li Abdanan'ê ji bermehên dîrokî yê herî girîng Piştkele ye. Piştkele 5 kîlometre dûrî Abdanan li ser Kewî Gundî Piştkele hatiye damezrandin. Evder di dema sasaniyan de wek bajar keleyekî hatiye avakirin. kele ji alî Mîrê Sasanî Şîrzad ve hatiye çêkirin. Teqrîben 2 hezar salî ye. Derdora qelê bi dîwarên dirêj hatiye parastin. Di nav diwarên qelê de bajarekî biçûk hebûye. Piştkele di dema sasaniyan de li heremê yek ji nawendên rêwebirî û leşkerî ya girîng bûye. Bajarkele di nav di tepeyan de hatiye damezrandin û ji bo parastinê bi ev dîwarê bilind û zexm hatiye dorpêçan. Piştkele ji bilî dîwaran ruxuya ye. Hin avahiyên kela navîn jî li ser piya ne. Li derdora qelê jî gelek şûnewarên dîrokî yên xerabûyî hene. Piştkele di nav gel de wek Keleyî Qedîm, Şaneşîn an jî Qelyan jî tê naskirin.

**Keleyî hezarder**

Li Abdanan'ê berhemeke din ya bastanî û navdar keleyî Hezarderî ye. Avahî li nêzî Abdanan'ê li kêlaka gundekî û li hember Piştkele cîh digre. Ji ber ku di nav qelê de gelek odeyên bi derî hene, ev nav lê hatiye danîn. Asasê qelê ji dema sasaniyan maye û di dema şaristaniyên din de jî hatiye bikaranîn. Di nav avahiyê de gelek odeyên razanê, mitbex, hewşên mezin, kîler û depo, herwiha gelek qurfeyên pirarmanc jî hene. Bi taybetî deriyên avahiyê û kemberên hindirîn balkêşin. Ser gelek avahiyên Hezarderî bi gumbetan hatine girtin. Derdora avahiyê wek keleyekî bi dûwarên sûrê ve hatiye parastin. Hezarder di dema xwe de li heremê yek jî meqerên leşkerî bûye. Ewlekariya rêya bazirganiyê jî vê heremê hatiye temîn kirin.

Hezarderî di dema şerê Îraqê de ji alî artêşa Saddam ve bi taybetî hatiye bombardiman kirin û xesarên mezin dîtiye. Beşên li ser piya mayî niha wek dibistan û pirtûkxane tên bikaranîn. Avahî herçend hin xesar dîtibe jî hîn jî li ser piya ye. Di avahiyê





de ji bo hin beşên xerabûyî xebatên restorasyonê hîn jî didome.

**Çeltik**

Xaka bi xêrûber ya Abdanan'ê bi taybetî ji bo kiştûkal û ajaldariyê destdar e. Herem bi hubûbat û fêkiyên xwe navdar e. Li bajêr bi taybetî genim, pembû, çeltik, kartol û gelek cûreyên fêkiyan tên çandin. Dema behsa kîştûkala Abdanan'ê tê kirin, çeltik yanê birincê vî bajarî tên bîra mirov. Dewrûbera Abdanan'ê bi zewiyên çeltikê dagirtîne. Çeltika bajêr bi taybetî li zewiyên derdora Çemê Siyako tê ajotin. Li wargeha kîşawerzî li sûka Abdanan'ê dîmenê herî xweş fêkî û sebzefiroşin. Xaka heremê di warê çandinî û berhemên kiştûkalî de gelek destdar e. Ji ber vê yekê sebze û fêkiyên heremê li sûka bajarên derdorê de jî tên firotin.

**Zemburdarî**

Hingivanî bi gotina Kelhoran Zembûrdarî jî li heremê karekî pêşketiye û di aboriya Abdanan'ê de roleke girîng dilîze. Hingivê herema Paşko li Kurdistan'ê navdar e. Xuleşîrka Çiyayê Zagrosan ji bo mêşên hingiv wek hêlînê ye. Ji ber xêrûbêra giya û kulîkên heremê gelek kes bi zembûrdarî debara xwe dike. Nebat û kulîlkên van çiyayan, xuleşîrka heremê di hingiv de aromayeke bitam çêdike. Zembûrdarên Abdanan'ê salê çend meh li deverê, kûreyên mêşê xwe datînin û hingivekî biqalîte bidestdixin.

Bi taybetî di mehên biharê de ku toximê çîçek û kulîlkan derdikevin, mêşên hêngiv xwe li wan digrin. Zembûrdarên Abdananî bi awayên nûjen karê xwe dikin û bi serbilindî şaneya kûreya mêşên xwe nîşandidin.

**Bazar**

Aboriya Abdanan'ê li ser kîşewerizî, ajaldarî û bazirganî ye. Wek gelek deverên Rojhilatê Kurdistan'ê li bajêr sanayî an jî endustrî nîne. Dewleta Îran'ê li heremê tesîs û fabrîqayan daniye. Sûka Abdanan'ê wek panayirekî ye. Li kolanên bajêr li aliyekî tîcaret, li aliyekî ziyaret, li aliyekî muhabet di nav hev de heta derengê şevê dajo.

Di nav bajêr de ji bilî sûkên kolanan, çend pasaj hene. Pasaja Xiyabanî Mistefa Xûmeynî ya herî kelebalix e. Di pasajê de gelek dukkan û esnaf lazmatiyên cudareng difroşin da ku pêdiviyên bajariyan bibersivînin. Li van nawendên bazirganiyê rûniştvanên bajêr lazmatî û pêdiyên rojane tedarik dikin.

Yek ji esnafên pasajê gulfiroş e. Di dikkana gulfiroş de ji cûrên gul û çîçekên zindî, heta yên xemlî û yên plastîkî tên firotin. Taybetiyeke Abdanan'ê bilindbûna rêjeya xwendina zankoyê ye. Li bajêr pirraniya xortan zanîngeh xwendine. U gelekê wan bê karin.

Yek ji firoşkarê herî mijûl yê sûka Abdanan'ê falafilfiroş e. Falafil ji arvanê nokê tê çêkirin. Piştî ku hevîr tê amadekirin, di qalibê kofteyê de berî nav rûn dibe, di wir de sor dibe. Paşê tevî sebze di nav nanê sêlê de tê amadekirin. Falafilên ku ev hosta çêdike heta êvarê bi sedan kesî têr dike. Ji ber lezzeta ev falafilan birçiyên sûka Abdanan'ê rêya xwe bi virve dixin. Abdanan bajarê xwarin û vexwarinên şîrîne jî. Li heremê çêkirin û xwarina şiranî û cûrê pasteyan pêşketiye. Şîranîfiroşê bajêr ku pezné şîraniyên xwe dide, dibêje li Abdanan'ê pastayên herî xweş ew difroşe. Li gor hosta, bi taybetî di rojên Newroz, remezan, cejn û şahiyan de muşteriyên wî zêde ne.

**Ahenger**

Îlam û Abdanan yek ji nawendên ahengeriyê ne. Di şaristaniya însan de yek ji cîhê ku maden di jiyanê de cara yekem hatiye bikaranîn ev herem e. Ji ber vê yekê hesîngerî bi peyva zarava heremê ahengerî ji roja ku îcad bûye heta niha, di nav pîşeyên heremê de cîhekî sereke û îstîsna digre. Pîşeyê ku ji roja hatiye îcadkirin û heta niha zêde neguheriye jî ev kar e. Agirê korikê, hesin, sindan û çakûç ji roja evil heta îro di dikkanên ahengran de cîhe xwe negurîne. Germahiya korika ahengerê Abdanan'ê û dengê çakûçê wî heta êvarê wek xemla sûkê olan dide. Ahenger zêdetir ji bo lazmatiyên gundiyan dixebite. Ew pêdiviyên wek das, balte, misas, qazme, melêv, tevr û tiştên din çêdikin.

**Xerat**

Li Abdanan'ê destekarî ji bav derbasî kur dibe. Ew qaîde di necariyê de jî wiha ye. Necarên Abdanan'ê jî karê xwe ji bavê xwe fêr bûne. Ev ji darên çiyayên Kurdistan'ê gelek pêdiviyên hemşeriyên xwe dibersivîne. Derî, sandok, pace, qefes, xemlên darî û gelek tiştên din ji destê hosta Reza derdikeve. Li gor hostayan di demên berê de ku makineyên xeratiyên nîn bû, karê wan gelek zahmet bû. Niha bi saya makineyên nûjen necarî êdî bûye yek ji pîşeyên hêsan.

**Xiyat**

Abdanan di warê destekarî de yek ji cîhên kevneperest e. Li bajêr hîn jî gelek pîşeyên kevnare dijîn. Xiyat yanê terziyê sûka Abdanan'ê di nav dengê makîna dirûtinê de di alema xwe de dixebite. Wek hemû bajarê Kurdistan'ê xiyat di sûkê de cîhekî îstîsna digrin. Lewra gelek kes şanaziya lîbasên gelêrî digrin. Ev xiyatxana Xiyabanî Îmam ku li Abdanan'ê terzîxaneke navdar e, herroj gelek kesan bi serûber dike. Şalê îlamî di girêdana kurdî de lîbaseke navdar e. Ji ber ku rûniştvanên Abdanan'ê bayixdana kincên kurdî dikin li sûka bajêr xiyatî ji pîşeyên zindî ye. Ev xiyat jî li aliyekî perçefiroşî dike û li kêlekê jî cila didrû. Ew dibêje gelek bajariyan lîbasên xwe ji perçeyên ku ew difroşe çêkirine. Perçeyên qumaş ku ji Kermanşa, Tebrîz û Tahranê tên, bi taybetî ji bo xiyatan tên firotin.

**Parkî şar**

Parkî Şar li bajêr cîhê sereke yên bîhndanê ye. Siya darên bilind û pelfireh rojên germ yên havîne talda yeganê ya bajariya ye. Park di nav bajêr de ye. Li ser meydaneke mezin hatiye damezrandin. Nav parkê bi çîçek û darên rengareng hatiye xemilandin. Parkî Şar, li Abdanan'ê wek giraweke hênik e. Di mehên germ yên havînê de stargeha bajariyan siya bin darê vê parkê ne. Park li nav bajêr hatiye danîn û bi gelek cûre dar û kulîlkan hatiye xemilandin. Rojên înê û yên bêhndanê ev park serapê bi bajariyan ve tijî dibe.









# Bedîuz
# SEÎDÊ

**Serdar Bedirxan**

Seserra 20. de alimo tewr pîl ê muslumanan o ke kurdan mîyan ra vejeyo. Muceddîdê dînî hesibîn o, yanî alimo ke her seserre de yeno û dînî goreyê şart û şurtanê 'esrê xo îzah keno û dîn rê xizmet keno. Seîdê Nursî, Rumî 1293 de dewa Nurs, nahîyeya Îsparît, qezaya Hîzan, şaristanê Bidlîs de ameyo dinya. Mîladî 1960 de Riha de şîyo rehmet.

Seîdê Nursî hezey her alimê kurdan perwerdeyê xo medresan de la hema şenikeya xo de dest pêkeno. Medresaya eya sifteyin Tax nizdîyê dewa xo Nursî de bîya. Seîdê Nursî şenikeya xo de wayîrê yew fitratî bîyo ke cayê xo de nêşnaynî vindero, hul û gam medresa bedilnaynî û çi cayo ke şiynî suxteyan reyde pêrodaynî û seydayanê xo reyra pênêkerdinî, la hetê aqil û cîhateya xo ra bala (dîqetê) herkesî antinî. Homay winî yew hêş dabi ey ke, her çi ke biwendînî xo vîr ra nêkerdinî û pê zekaya xo meseleyanê tewr xorînan û têmîyankewteyan, bi rehetey, cêmîyan ra vetinî. 'Emrê xoyê new serre de, perwerdeyo ke 15 serran de yeno vînayîş, Bazîd (Doğubeyazid) de, medresaya Şêx Mehmed Celalî de, 3 mengan (aşman) de qedîneno û îcazet gêno. Medreseyê vengdayey ê Kurdîstanî yew bi yew geyreno, vera aliman keweno munazarayan, ke o çax nê bêj munaqeşeyî mabênê aliman de zaf bîynî. Zorê reqîbanê xo yê hemînan/pêronan beno. No tewir, hama ciwanîya xo de, hetê eqil, zanayîş û zeka ra lîyaqatê xo ispat keno, coke ra leqabê Bedîuzzeman yanî "entîkeyê zemanî, zemanê xo de sey ey sewbîna çinbeye" yeno ci dayiş.

Bedîuzzeman wexto ke Tîllo de beno, şewêk Şêx Evdilqadîrê Geylanî yeno hewnê jey, tira vano: "Mele Seîd! Şo Mistefa Paşayî het, ey silayîya hîdayetî biki. Ey şîret biki ke wa dest zordarîye ra verra do û nimajê xo bikero û holîye bikero. Eke va ney ey bikişi." Mistefa Paşa serekê 'eşîra Mîran bi. Siltan Evdilhamîdo diyin ey kerdibi paşayê Hamîdîye.

Mele Seîd senî nê hewnî vîneno pirde hazirîya xo keno û rasterast şono, xeyma Mistefa Paşayî, Cîzre. Mistefa Paşa yeno, ê ke uca hedre benî heme ey vera warzenî pay la Bedîuzzeman xo herinda xo ra nêleqneno. Paşa zaf hêrs beno labelê nêdano teber, perseno vano: "No kam o?" Tira vanî ke Mela Seîdo Menşur o. Tira perseno vano: "Qey çi rê ti hameyî îta?" Mela Seîd vano: -Ez hameya îta ke to bêyara rayîr ser. Ya ti zordarîya xo ra fek verradanî û nimajê xo kenî ya zî ez to kişena.

Paşa vera nê cewabê gelekî hêrs beno û vejîno teber. Badê biney geyrîyayîşî ageyreno bin xeyme û gilana Mela Seîd ra perseno ke semedê çi rê hameyo. Mela Seîd vano; "Mi to ra va ke ez semedê çi rê hameya."

Mistefa Paşa kalmeyê Mela Seîdî ra ewnîno û vano:

– Pê no kalmeyo pîs?

Bedîuzzeman:

– Kalme nêbirneno dest birneno.

Mistefa Paşa rayna vejîno teber, biney geyreno û dima yeno zere. Bedîuzzeman ra wina vano:

– Cîzîre de gelek alimê mi est î. Eger ti bişênî zorê înan berî çi çîyo ke ti vanî ez kena. Eger ti zorê înan nêberî ez to finena royê Dîcleyî.

Bedîuzzeman:

– Senî heddê mi nîyo ke ez zorê heme aliman bera, eynen wina heddê to nîyo ke ti mi bierzî royê Dîcleyî.

Dima têreyde şonî Cîzre. Semedo ke Bedîuzzeman uca de cewabê persanê heme alimanê Mistefa Paşayî dano, Paşa mecbur maneno, hawayo ke soz dayo, dest bi nimajî bikero û yew tifingê mawzerî yadîgarî ey keno.

Bedîuzzeman 1894 de şino Mêrdîn. Uca de mîyanê heme bêj faalîyetanê sosyalan de ca gêno. Uca de raştê yew telebeyê Şêx Cemaleddînê Afxanî yeno û tira wayîrê malumatê fikrê sîyasî ê Afxanî beno. Sifte Mêrdîn de dest pêkeno sîyaset dir eleqedar beno. Heme cemaatan de, ke tede hedre yo, beno sebebê pêkewtişan, coka mutasarrafê Mêrdînî, seba tedbîrî, ey Mêrdîn ra qewirneno.

Bedîuzzeman şono Bidlîs. Walîyê Bidlîs walitîye de yew ode tehsîsî ey keno. Di serrî uca de maneno û kitabxaneyê ucayî ra, ke tede kitabê îlmê fenî estbî, îstîfade keno. Dima, Wan ra tay kesê pîlî ey silayîya Wanî kenî. Bedîuzzaman 10 serrî Wan de koşka Tahîr Paşa de maneno û kitabxaneyo gird ê koşk de xebata xo rameno. Hetêk ra coxrafya, tarîx, matematîk, kimya, astronomî û felsefe de xo aver beno hetêk ra zî cuya sosyal ê milleta xo tehlîl keno. Tenganeyo ke milleta ey tede yo semedê xelasê înan ehemmîyetê perwerdeyî vîneno û vano ganî medresayan de hem îlmê dînî û îlmê fenî pîya bêrî musnayîş. Semedê ney zî vano gerek yew unîversîte bêro ronayîş. Nê hedefî xo heta peynîya 'emrê xo paweno.

Yew roj Tahîr Paşa ey rê rojnameyêk ra nutqê wezîrê bandorî ê Îngîlistan, Gladstone, ke Meclîso 'Am ê Îngîlizan de kerdo, waneno. Gladstone destê xo de Qur-an, vato: "Heta ke no Qur-an destê muslumanan de bibo, ma nêeşkenî înan sero hakîm bî. Ma se kenî bikerî ma ganî no Qur-anî îskût bikerî û werte ra wedarî, yan zî ma ganî muslimanan ey ra serd bikerî." No nuşte dinyaya Bedîuzzemanî têser û têbin keno. Vera qalanê wezîrê Îngîlîzan vano: "Ez zî go dinya alem rê îlan bika, bida zanayîş ke, Qur-an sey yew tîja ebedîya mucîzeyin a ke ne tefîna ne zî yena tefinayîş." Bedîuzzeman no birê xo reyra heyatê xo de xo rê hedefo diyîn roneno.

Wan de namebê Xorxor yew medrese awan keno û pê yew metodo newe ders dano şagirdan. Bedîuzzeman semedê bedilnayîşê metodê dersdayişê kehenî, ke hînî demode bîyo û semedo ke Kurdîstan de cahîley û nezaney orte ra wedarîyo, ke zafê kurdan bêwende bî, wazeno namebê Medresetuz Zehra yew unîversîte bêro ronayîş û ziwanê perwerdeyî zî hîrê ziwanan dir; 'Erebkî wacîb, Kurdkî caîz, Tirkî lazim bibo. (1) Semedê nê xayeyê xo 1907 de şono Îstanbul, wazeno Sultan Ebdulhamîto II. bivîno û seba ronîyayîşê unîversîte erzuhalêk (dîlekçeyêk) dano zerre la çi heyf ke çîyo ke hêvî kerdîne nêno ca.

Îstanbul de, bano ke tede maneno serberê ey de wina nuseno: "Îta de cewabê heme persan yeno dayîş, her mesele hal bena la persi nêna persayîş." Îstanbul de kesanê zaneyayan de, ser meseleyanê îlmîyan de keweno munaqeşeyan û nameyê ey beno vila. Bedîuzzeman no dem hetê tirkan ra namebê Seîdê Kurdî yeno şinasnayîş. Hetta demê surginbîyayîşê ey de zî neteweperestê tirkan kurdbîyayîşê ey vila kenî ke wa pey şaro tirk xo tira dûrî bitepşo mêl nêdo bider.

Seba cahîley ra xelisnayîşê kurdan û heme miletanê bisilmanan û seba zanayebîyayîşê înan kovar û rojnameyanê wextî de gelek meqaleyê tirkî û kirdaskî nuseno, înan ra yew ke rojnameyê "Kürt Teavün ve Terakki Gazetesi" de 1908 de kirdaskî weşanîyayo, tede semedê raverşîyayîşê Kurdan vano; "Biwanî, biwanî, biwanî ke şima cahîlîye ra bixelisî. Yewbîn ra hes bikerî ke yewbîyayena xo temîn bikerî û bixebitîyî, wayîrê sen'et û hunerî bibî ke şima muhtacê kesî nêbî. (2)

Îstanbul de meqale û nuşteyanê xo û waazanê xo reyra mêl dano fikrê meşrutîyetî. Hukumat muhalîfbîyayîşê ey ra narehet beno, zaf rayan ey tepîşenî. Semedo ke fikrê millîyet dinya sero vila bîynî û împaratorîya Osmanîyan mîyan de zafî milletî semedê azadîya xo sere wedarnaynî û Bedîuzzeman zî Kudîstan ra hamebi Îstanbul û semedê kurdan xebati




# zeman NURSÎ

kerdinî û wayîrê projeyan bi coka hukûmat Bedîuzzaman ra xuy keno. Hukûmat ewnîno ke Seîdê Kurdî fikrê xo ser o apey game nêerzeno na ray tira vanî xînt o, ey fînenî nêweşxaneyê deluyan. Badê muayeneyî, doktorê timarxaneyî raporê xo de vano; "Eke no merdim delu bibo dinya de merdimo baqil çin o."
Waqayê 31 Adare de zaf waazanê xo reyde serewedartişê eskeran rê manî beno la gilana zî ey vejenê Mehkemaya Dîwanê Herbî. Hakim asîyê ke darxeneqan de eleqnaye bîyî, înan Bedîuzzeman nawneno û perseno: "To zî şerî'et waşto?" Bedîuzzeman vano: "Belê, eke bibî ez amade ya ke tek yew heqîqetê şerî'et rê hezar ruhanê xo feda bikera. Çunke şerî'et sebebê seadet, 'edaleto mahz û fazîlet o. Labelê hawayo ke ihtîlalcîyî wazenî ay hawa ney." Uca de pê netîceyê mudafaya xo ya menşure serbest veradîno.
Îlanbîyayîşê Meşrutîyetê II.î ra pey ageyreno memleketê xo. Mîyanê 'eşîranê kurdan de geyreno, persê ke mijaranê sey meşrutîyet, hurrîyet, medenîyet ser o yenî persayîş înan rê hende cewabanê maqulan dano ke ê cewabê xo hema zî meqbul î. Nê waazanê xo sey pers û cewap eserê xo "Munazarat" de 'Erebkî û Tirkî weşaneno. No kitabê xo reyde bali anceno meseleya kurdan. Destpêkê kitabî de wina nuseno: "Qitayêka gird û bêbexte, dewletêka şanin û bêsi'ude, qewmêko qîmetin û bêkes rê reçete; emr û yesaxanê Qur-anî caardiş o." Serra 1911 de Şam de Camîyê Emewîyeyî menşurî de, vera yew cemaato girdî, ke tede nizdîyê se heb alimî û qasê diwês hezar muslumanan, yew xutbe dano, behsê problemanê muslumanan keno û çareyê ê probleman vano. Dima no xutbeyê xo namebê "Xutbeya Şamî" neşr keno. Mijarê ke a xutbeya xo de behs kerdibî hema zî mîyanê muslumanan de sey problem vinderte yî û hema zî hal nîbîyî.
Tawo ke herbê dinya o yewin, ke 1914 de dest pêkeno, vera orisan zerrba xo, hêzê mîlîsanê kurdan rê beno serekê qumandanê alayî, hingê cengî de Bidlîs de esîr keweno. Nizdîyê 2,5 serrî (di serrî nêm) destê orisan de esîr maneno.
Rojê ey ê esaretî eskeran û subayan rê dersdayîş reyra vêrenî. Rojêk başqumandanê oris ê Qafqasan, Nîkola Nîkolavîç, yeno teftîşê esîran. Bedîuzzeman ey vera nêwarzeno pay, qumandan vano qey mi nêşinasnayo hewna ey vera vîreno, ewnîno ke reyna nêwariş pay, hêrs beno, bi tercuman perseno:
-Sek halo mi nêşinasneno?
Bedîuzzeman:
-Ez şinasnena Nîkola Nîkolavîç o.
Qumandan:
-Eke wina yo, ordîyê orisî rê û çarê orisan rê heqaret keno.
Bedîuzzaman vano:
-Mi heqeret nêkerdo. Ez alimêkê bisilmanan a. Merdimêko îmanin, ra serê merdimo ke Cenabê Heqî nêşinasneno yo. Coka ez to vera nêwarzena pay. Seba nê tewrê xo Bedîuzzeman Dîwanê Herb de mehkeme beno, qerarê îdamî yeno ci dayîş. Verê îdamî musaade wazeno ke di qamî nimajî bikero. Qumandanê orisan no hereketê ey vîneno û yeno ey ra 'uzrê xo wazeno vano:
-Yeqînê mi pê bestîya ke o hereketê to dîndareya to ra vejeya meydan, coka ez rîca kena ti mi ef bikerî.
7 Teşrîne 1917 de îxtîlalê orisî dest pêkeno. Semedê qîyamî, Rûsya dekewena yew teşxele û rejîmê çarîtîyî rijîno. Seîdê Nûrsî no teşxele ra îstîfade keno û esîran mîyan ra remeno, xo resneno Îstanbul. Îstanbul de tayînê endamê "Darul Hîkmetul Îslamîye" beno, ke hema newa saz bîybî û sey aqedemîya îslamî gurîyaynî.
Gama ke Îstanbul kewna bin destê îngilîzan, paşt dano xoverrodayoxan û duştê îngilîzan namebê "Xutuwatê Sîtte (Şeş Gamî)" yew rîsale nuseno û vila keno. Îstanbul de, vera îngilîzan xebata Bedîuzzemanî û qehramanîya eya ke verê cû duştê orisan mojnaybî, bala Hukûmatê Anqarayî anceno û bi israr pêsero wesînenî ke wa bêro Anqara. Şîyayîşê xo yê Anqarayî de vîneno ke mebusê ke Meclîs de yî vera dîn û nimackerdîşê de sist î, coka semedo ke ehmmîyetê nimac û îbadetî bido zanayîş yew beyanname hedirneno û meclîs de mebusan rê vila keno. Tayn kesî, pa Mustafa Kemal ra, no tewir nuşte û qalanê Bedîuzzeman Seîdê Nursî ra xuy kenî, wazenî ey rê manî bibî. Bedîuzzeman duştê Mustafa Kemalî nê vateyanê namedaran vano: "Paşa paşa! Kaînat de heqîqata tewr berzi îman o, dima nimaj o. Çewo ke nimaj nêkero xaîn o, hukmê xayînî merdud (qewirnayîş, şahideya ey redkerdiş) o.
Seîdê Nursî, cuya newa ê Anqara de çîyo ke hêşê ey bikewo nêvîneno. Vîneno ke yew fikrê dînsizey, gelek bi hêz, pinanî xebitîno ke ayamê serfirazeya serbestey bixeripno û jehrin biko. Vîneno ke reîsanê Anqara de, ê ke qala înan pere kena, taybetê Reîsê Cumhurî de, yew 'eynadîye wişke û zekaya tunde est a. Nêwazeno ke na zeka bitersno û ey 'eleyhê îslamey de bido gurînayîş. Bir gêno ke Anqara ra şîro welatê xo. 1923 de şono Wan, koyê Erek de yew kaf de keweno înzîwa.
Hînî seba ey yew cuya newe destpêkena. No qismê cuya xo, bi vatişê xo, Seîdo Newe name keno. Seîdo Kehen ke aîdê rojanê tef û dumaninan ê cuya sosyal û sîyasîyan bi hînî tepa meneno. Hetê qederî ra dekweno tewirna yew mucadele mîyan.
1925 de tawo ke qiyamê Şêx Seîdî virazîno, Bedîuzzeman destek nêdano qîyamî labelê duştê heretî de kî nêvejîno.(3) Hewna zî Cumhurîyeto Newe tersê îhtîmalê daxîlbîyayîşî ra, ey kurdan mîyan ra vejeno, surgunê Burdur, Isparta û Barla keno. Hînî surginî, hepsî û mehkemeyî pêpey ra yenî. Heta mergê xo, 1960, hewna nêeşkeno şîro welato ke tede ameyo dinya û tede pîl bîyo û hesra ey anceno. Na cuya xoya newe de Seîdê Kurdî hînî bîyo Seîdê Nursî û xo dayo meseleyanê dîn û dîyanetî ser, qethene sîyaset û polîtîqa dir 'eleqedar nêbeno. Rojanê xo tefekkuranê ruhî û qelbî de vîyarneno û yew wazîfeyê îrşadî yo manewî ca ano. Xo weqfê xizmetê Qur-an û îmanî keno. Çunke, herbê dinya o 1. ra pey qewetê îslamîyetî şikîyayo û yew fikrê bêîmaney dinya ser o bîya vila. Însananê ê wextînan no fikro neweşo maddî ra seveknayîş îcab keno. Ha yo, no wezîfe terefdê qederî ra mîyanpolanê Bedîuzzeman Seîdê Nursî sero ronîyabi. Eseranê xo yê namedaran ke "Rîsaleyê Nur" name benî mîyanê tirkan de dano nuştiş.

*Binnotî:*
*1) Tayn muslumanê nijadperestê tirkan, sey Fethullah Xoceyî, nê vateyanê Bedîuzzemanî bedilnenî vanî ustad vato. 'Erebkî ferz, tirkî wacîb, kurdkî caîz. Bi no hawa wazenî qîmetê ziwanê kurdkî bikemînî. Nê bêj muslumanî kelîmanê kurd û kurdistanî zî Kullîyatê Rîsaleya Nurî ra vetî herinda înan da şark/şark vîlayetlerî û doğulu şuxulnenî.*
*2) http://www.ufkumuz.com/ey-geli-kurdan-3726h.htm*
*3) Na mesele de zî nijadperestanê tirkan, ê ke xo musluman û telebeyê ustad name kenî vanî; qaşo Şêx Seîd ustad rê mektub erşawito, Ey zî vato; "Milletê tirk bi seran o ke bisilmanan rê xizmet kerdo û gelek welîyê pîlî înan mîyan ra vejeyî, ganî tornanê înan rê kalme nêro antiş, şima zî meancînî, nêtê xo ra vazgeç bibî." Labelê raştîya xo de wina yew hedîse wextê Dewleta Osmanan de qewîmîyaya û ustad zî wina yew çî semede ê hedîseyî vato. No tewir zurî ke hetê tirkperestan ra fekê ustad ra vajîyayî û debîyî mîyanê Kullîyatî, semedê malumato hîra biewnî lînko cêrên ra.*



## Di siyaseta kurd de rewşa jinan

# Jin di siyasetê de çalaktir dibin

**Lîsa Deysem**

Yek ji pîvanên asta şaristaniya netewan ji bêguman beşdarî û çalakbûna jinê ya di nav civakê, di qada aborî û siyasetê ye. Ji bo vê yekê pergîkirineke hêsan a civak û neteweyên rojavayî û rojhilatî dikare daneyên berbiçav li ber me raxîne. Di vê babetê de her çiqas şert û merc ji hev cuda bin jî li hemû perçeyên Kurdistanê jina kurd tekoşîneke bêhempa meşandiye û taybet di van her dû salên dawî de bi vê tekoşîn û geşedariya xwe li cîhanê navbang bûye û pêşî li dîplomasiya kurd a Navnetewî vekirî ye. Wekî me got beşdariya jinê ya siyasetê yek ji nîşaneyên herî grîng a pêşçûna gel û netewan e. Bi vê mebestê, di van rojên ku hilbijartin nêzîk bûne de me xwest ku em beşdariya siyasetê ya jinê ji siyasiyên jin ên ku di nav partiyên siyasî de cih digirin bipirsin.

Di demeke ku li Kurdistanê jin di her warî de dibin xwedî gotin û partî û rêxistin bêçar dimînin ku bernameyên xwe li gor daxwazên jinan aktûel bikin de, me ji jinên ku li Bakur, di nav partî û rêxistinan de bi awayekî çalak cih digirin, rewşa beşdariya jinan pirsî. Çalakvana Navenda Jinan a Kardelen'ê Mukaddes Alataş, Namzeta Parlamenê ya HAK-PAR'ê Berrin Eren û Endama Şaxa Jinan a TKDP'ê Sevda Buran, di bareyê beşdariya jinan a siyasetê de di hûrguliyan de tiştên cuda bêjin jî, di bareya gurrbûna beşdariya jinan de heman tiştan anîn ziman û gotin ku divê ev beşdarî zêdetir bibe.

### Berrîn Eren: Divê peymannameya CEDAW'ê bê çespandin

Namzeta Parlamenê ya HAK-PAR'ê Berrîn Eren, di derbarê beşdariya jinê ya siyasetê de amaje bi tekoşîna jinan kir û anî ziman ku têkoşîneke beyî jinan nikare bi ser bikeve û ji ber vê yekê divê jin tevlî hemû qadên civakê bibin. Eren, ji ber ku li Kurdistanê, tevlîbûna jinan a jiyana siyasî û civakî ne di asta Ewropayê de ye nerazîbûna xwe anî ziman, û diyar kir ku ew wek HAK-PAR, daxwaz dikin ku Peymana Navnetewî ya Pêşîlêgirtina Hemû Cûre Qewirandinên li Dij Jinan (CEDAW) ya ku ji hêla Netewêyên Yekgirtî (NY) û Tirkiye'yê ve hatiye pejirandin were cîbicîkirin û dom kir: "Divê hemû pirsgirêkên jinan bi rêbazên aştiyane û li ser xalên wekheviyê werin çareserkirin. Armanca sereke ya HAK-PAR'ê avakirina civakeke azad ku wê hemû cûre cihêkariyan ji holê rake." Eren da zanîn ku di nav 472 namzetên HAK-PAR'ê de 130 jin hene û wê HAP-PAR, ji bo jiholêrakirina tundiya li ser jinan û bidestxistina hemû mafên jinan, bê navber xebatan bimeşîne. Berrîn Eren got:

"Em ê, ji bo cîbicîkirina rêzikên CEDAW'ê, têbikoşin da ku jin mafê xwe yên azadiya aborî bidest bixin, di civakê de rola xwe ya diyarker bileyîzin û hemû mafên xwe di yasayan de rewa bikin. Her wiha em ê li hember pergala perwerdehiyê ya ku şer û tûndiyê pîroz dike têbikoşin û hewl bidin ku perwerdehiyê ji gotarên nijadperest xilas bikin û perwerdehiya zimanê zikmakî pêkan bikin." Berrin Eren berdewamiya tûndiya li dij jinê destnîşan kir û da zanîn ku her roj 3-4 jin ji alî xizmên xwe ve tên kuştin, ji bo pêşîlêgirtina vê rewşê polîtîkayeke baş naye meşandin û hê jî perwerdehiya zimanê zikmakî asteng e. Eren got: "Wek HAK-PAR, em li dij van polîtîka û pêkhateyan têdikoşin û hewl didin ku di vî warî de jinan hişyar bikin û li ser alternatîfên çareseriyê radiwestin." Berrîn Eren, her wiha anî ziman ku ew piştgirî didin hemû xebat û çalakiyên rêxistinên jinan yên ku di vî warî de têdikoşin.

### Mûqaddes Alataş: Destkeftên jinan encama têkoşîna wan e

Xebatkara Navenda Jinan a Kardelen'ê Mukaddes Alataş jî, li ser xalên grîngîdayîna jinan yên beyannameya hilbijartinê ya HDP'ê rawestiya û anî ziman ku ev destkeftî, di encama têkoşîna jinan a hezar salan a ku ji alî kolektîfên jinan ve hatiye bidestxistin û ji ber vê yekê jin pir girîngiyê didinê. Alataş wiha peyivî: "Ji gotarên jinan ên di siyasetê de bigirin heta avakirina destûreke parasvan a mafê jinan, ji budceyeke ku li gor hestiyariyên regeza civakî avabûyî heta tevlîbûna jinan a pêvajoya aştiyê. Tekoşîna di van babetan de hêza jinan bi jinan didin bawerkirin. Têkoşîna li dij tûndiya di nav malbatê de jî yek ji girîngtirîn xalên beyannameyê ne. Li aliyekî din cihê bextewariyê ye ku ji % 100'ê namzetên jin ên HDP'ê, ji kevneşopiya têkoşîna jinan hatine." Alataş, xalên girîng ên di derbarê jinan de yên beyannameya hilbijartinê ya HDP'ê wiha birêz kir: "Divê jin, di hemû qadên jiyanê de maf û azadiyeke wekhev bidestbixin, divê pêşî li her cûre tundîtiya zayendî ya li ser jinan û bazirganiya jinan bê rawestandin, divê tûndîtiya di nav malbatê de û kuştina jinan wek sûcên li dijî mirovahiyê bêne dîtin, divê mafê parastinê yê jinên ku li derve naşixulin bê cîbicîkirin, divê mafê rêxistinbûna taybet û xweser a jinan bê dabînkirin."

Mûqaddes Alataş, di berdewamiya peyvîna xwe de balê kêşa ser rêjeya budceya Tirkiye'yê ya ewlehiyê û got: "Ger ku ev budceya ewlehiyê ji bo zayenda civakî bê dabînkirin, wê xizaniya jinan ji holê rabe. Alataş anî ziman ku hebûna babetên wekî zêdekirina navendên şêwirmendî û piştevaniyê yên jinan, parastina mafên xwegihandina xizmetên civakî û zêdekirina xizmetên agahdarkirinê û bi taybetî kirpandina li ser bêkariya jinan ji bo jinan pir girîn in. Di beyannameyê de xwedîkirina pîr û kal û zarok û nexweşan jî wek xizmeteke civakî tê tê dîtin û bi vî awayî wê jin bergîdana keda xwe bistînin, di aboriya xwe ya xurtbûyî de ew ê biryara xwe bidin û ji ber vê yekê jî wê nebe qewraşa mêrê nav malê." Alataş destnîşan kir ku di warê hişmendiya baviksalariyê de bernameya partiyên din pêşbirkê dikin û mîna hev in, çimkî bi heman hişmendiyê û bi destê mêran hatine amadekirin, lê belê beyannnameya HDP'ê ne weke wan e û ji hêla jinên ji kevneşopiya têkoşîna jinan hatî ve hatiye amadekirin û ev yek jî hêviyê dide jinan.

### Sevda Bûran: Em giraniyê didin koçberiyê

Endama Şaxa Jinan a T-KDP'ê Sevda Bûran jî di bersivdana pirsên me de da zanîn ku ji ber partiya wan nû hatiye damezirandin bernameya wan a li ser polîtîkayên jinan heta niha nehatiyê diyarkirin, lê belê digel vê yekê jî baskê T-KDP'ê yê jinan, ji girseyeke mezin pêk tê û danûstandina baskê jinan ê T-KDP'ê bi partî û saziyên din re didome. Bûran got: "Wek T-KDP, em grîngiyê didin çareserkirina pirsgirêkên penaberan. Bi taybetî jî em grîngî didine penaberên ku ji Rojava hatine. Her wiha em grîngiyeke mezin didin zarokên Kobanêyî û em pir alîkariya wan dikin. Em bi rêkûpêk diçin serdana kampên wan ên ku lê têne perwerdekirin û alikariyên cil û berg û qertasiye li wan dikin. Her wiha em bi malbatên wan û taybet bi jinan re jî hevdîtinan pêk tînin û pêdiviyên jinan bi cih bînin. Partiya me rûmetê dide jinan û wê wisa jî berdewam bibe." Her wiha Bûran got ku T-KDP'ê bi awayekî domandî diçe serdanên sazî û dezgehan û bi armanca xurtkirina şaxa jinan a T-KDP'ê ew tax bi tax digerin.

# Şaredariya penaberan





Zeki Unutur

Tekoşîn Çelîk

Piştî êrîşên DAİŞ'ê li ser bajarê Kobanê pêk hat bi pêşengiya Îbrahim Halil Baran ji bo penaberên Kobanê xebatên alîkariyê dest pê kir. Ew xebatên alîkariya mirovî di demek kurt de bi navê DEST bû komaleke navnetewî. Di lijneya yekem de ji bo serokatiya DEST'ê Zeki Unutur hat hilbijartin û dest bi xebatên xwe yên fermî kirin. DEST, xwe wek rêxistineke sivîl û civakî dide nasîn.

**DEST bi xebatên xwe balê dikêşe**

Di navbera şer, pêvçûn û rewşa aloz ya li Rojavayê Kurdîstan'ê dest pê kiri bû, li Bakur jî gelek welatiyên xêrxwaz ji bo alîkariya penaber û hemwelatiyên xwe bikin bi dildarî her kesî ji aliyekî ve dest dirêjî penaberên welate xwe dikir. Ew penaber, penaberên welatê xwe û mêvanên mala xwe bûn. Lê dîsa jî pedivî ya wan ji male kê û ji xakekê hebû. DEST, ji hemû penaberên welatê xwe re bû dest û hate dirêjkirin. Dildarên alîkariya Komele ya Alikarî ya Mirovî DEST, beriya bibe komele, ji dema bûyerên 6 û 8'ên Cotmeh a 2014'an û heta niha xebatên alikarî û xizmetguzarên mirovî dikin. Di wê demê de nêzîkî 500 hezar TL alîkarî belavkiribû û ew gihîştibûn 3 hezar malbatan. Ji ber astengên fermî û nerînên nexweş, biryara veguhestina komelebûyînê hate girtin, serî li parêzgariya Riha'yê hate xistin û wek komele xebatan domand. Komele ya DEST, di destpêkê de bi belavkirina bettanî, ji bo zarokan şîr , ji bo nexweşan derman û ji bo her kesî xwarin û amûrên bijîşkî xebatan meşand.

**"Ji bo zivistanê jî xizmet hatin dayîn"**

Bi hatina zivistanê re, ji bo kesên ku li derve diman xanî hatin amade kirin, ji bo yên ku xanî bi dest wan neketibûn kon hatin vekirin û yên ku kon jî bi dest wan neketibûn ji aliyê Komele ya DEST ve ji wan re xênî hate kirêkirin. Êdî DEST, ji ber van alîkariyên ku dikirin di nav penaberan de wek şaredariyê dihat xuyakirin. DEST, di rêziknameya xwe de destnîşan dike ku ji bo civakeke pêşketî û şareza, siberojeke bi tenduristî pêdiviyên civakî yên sivîl bi cih bîne, bi hişmendiya berpirsiyariya civakî hesta alîkariyê bi pêş bixe, aboriya civaka kurd û Kurdistan'ê bi hêz bike, ji bo parastin û danasîna nirxên civakî xebatan pêk bîne, di navbera mirov û welatan de bibe pire û wan nêzîkî hev bike.

**"Xebatên cihêreng têne meşandin"**

Gelek xebatên cuda yên Komele ya DEST'ê hene. Yek ji xebatên wê yên herî giring jî alîkariyên jinên bi bebik in. Bi projeyan ve ew van xebatên xwe dikin û ew pêdiviyên wan jinan dabîn dikin. Xebateke balkêş jî kampanyaya ajala ye. Her çiqas bi destpêkirina dîroka xwe rastî cejna qurbanê were jî , biryara kampanya yê berî cejnê bû. Ji bo kûrdîstan vala ne be û penaber li welatê xwe bi jîn di be kû rewşa wan ya aboriyê jî û pirsgirêka debarê jî were çareser kirin. Di vê mijarê de DEST bawer e ku bi kampanya ajalvanî û cotkariyê ve wê ew her dû pirgirêk jî bê ne çareser kirin. Berî her tiştî divê ajalvanî pêş bikeve û her kesê xêrxwaz di cejna qurbanê de ji dêvla sê, çar kîlo goşt belav bike, bila sê, çar kes bigihîjin hev û bizinekê bidin malbatekê. Ew bizin wê bibe bingeha debarê. Heke bizin bizê ewê zede bibe û êdî wê xwedîkirina ajalan dest pê bike. Xebateke din jî cotkariye. Di vê kampanyayê de belavkirina tov û zibil tê kirin. Tanqa azotê standin kû ji bo şaneyên zindî zêde bibin.

**Şaxên DEST'ê projeyên navnetewî didomîne**

Serokê Giştî yê DEST'ê Zeki Unutur, di derbarê van kampanyayan de ragihand ku ji bo berdewamkirina alîkariyan divê ew bi kantonên Cizîr û Kobanê re protokolan îmze bikin û hemû kar û kiryarên xwe gav bi gav bi awayekî fermî bikin. Unutur got: "Armanca me ew e ku taybet li Kobanê û bi giştî li Rojava aboriya gundiyan baştir bikin. Divê Kurdistan vala nebe. Ne pirsgirêkên ajalvaniyê û ne jî yên cotkariyê bi vê rewşa niha ya aborî çareser nabe û jiyan her biçe wê zehmetir bibe." Unutur di derbarê tor û şaxên ku xizmetên mirovî yên DEST'ê de jî da zanîn ku navenda Komele wan li Pirsûs'ê ye, lê belê li Ewrûpa'yê; Li Swêd, Almanya, Swîsre û li Tirkiye'yê jî li Stenbol û li Bakur jî li Şernex, Mêrdîn û Wêranşar'ê jî şaxên wan hene. Unutur wiha domand: "Têkîliyên navnetewî ji bo projeyên alîkariyê yên siberoja me gelekî girîng e. Di demeke nêz de ez ê herim Swêd'ê û li ser xebatên alîkariyê û mafên mirovan lêkolîn û hevdîtinan pêk bînim."

Ji bilî van xebatên alîkariyê, xebatên vegera penaberan û avakirina Kobanê û Rojava gelek xebat tên kirin. Komele ya DEST dixwaze vê mijarê bi têkîliyên navnetewî çareser bike. Bi pengaveke mezin bi NY'ê re protokolekê îmze bike û wek taşeron an jî alîgiran ji bo damezrandina bajar û civakê di projeyan de bixebite. Ji bo gel û penaberan jî rêveberî û şêwirmendiyê bike. DEST ji aliyekî ve jî hewl dide ku xortên kurd bidine xwendin. Di vê çarçoveyê de derfetên xizmetên perwerdehiyê jî dabîn dike û niha heştê xwendekaran dide xwendin. Her wiha di demek nêz de, ji bo xwendekarên ku îsal zanîngeh qezenc kirine, wê hewl bidin ku bûrsê bidine xwendekaran.

**DEST xebatên wêjeyê jî dimeşîne**

Xebatên DEST'ê yên Di warê wêjeyê de jî hene. Di vî warî de DEST, hewl dide ku li ser navê Celadet Elî Bedirxan pêşbaziyeke wêjeyê li dar bixe. Kesên ku di warê wêjeyê de xwe gihandine an jî dixwazin xwe bigihînin dikarin serî li pêşbaziyê bixin û tevlî xebatên komeleyê bibin. Di encama pêşbaziyê de wê xelateke mezin bê dayîn. DEST, ji aliyekî ve xebatên alîkariya mirovî dimeşîne, ji aliyê din ve hewl dide ku bi projeyên xwe ji bo ciwanên kurd derfetên xwegihandina çand û huner, ziman û wêjeyê dabîn bike.

Komele ya DEST ku beriya şerê Kobanê xebatên restorekirina gundên ku di demên 90'î de hatibûn valakirin jî meşandibûn, wan gundan ji bo penaberan sererast kiribûn û penaberan li van gunda bi cîh kiribûn. Ji ber van xebatan Komele ya DEST bala gelek sazî, rêxistin û çapemeniya navnetewî kişandibû. Serokê DEST'ê anî ziman ku di qada alikariyê û mafên mirovan de di nav gelek saziyên sivîl, rexistinên serbixwe û weqf û komeleyên alîkariyê de hemberî hebe wê baştir be. Unutur da zanîn ku ew ne hemberên tu kesî ne, ne girêdayî tu rexistinan in û wek komeleyek asayî li ser alîkariya mirovî û parastina mafên mirovan xebatan dimeşînin. Unutur got: "Em dixwazin li Kurdistan'ê dezgehên sivîl ên alîkariyê û hemû xizmetên civakî zêde bibin û ji birînan re bibin derman."





# Nûber li Sêrt'ê di xizmeta kurdî de ye

Reyhan Akgün

Berê ji bo kurdî digotin 'zimanê me ne zimanê nivîsê ye.' Lê belê dengbêjan bi dengê xwe yên xweşnewa dîrok, çand û hunera kurd, radigihandin nifşên nû û rê li ber helbest, çîrok û hemû cûre beşên wêjeyê vekirin." Edîtorê yekem weşanxaneya kurdî ya li Sêrt'ê Nûber'ê Îzedîn Oktay, ji tûrikê sedemên vekirina Nûber'ê vê sedemê derxist û bi lêv kir. Lê bêguman tûrik tijî bûn. Sedema herî grîng jî li Sêrt'ê tunebûna weşanxaneyeke kurdî bû.

Bajarê Sêrt'ê ku di dîroka wêjeya kurdî de xwedî paşxaneyeke dewlemend e, di salên dawî de di warê wêjeyê de lawaz bûbû. Ji bo vê rewşa neyînî ji holê rakin û pêwendiyekê di navbera nifşên îroyîn û wê paşxaneyê de saz bikin kurdîhezên Sêrt'ê li hev civiyan û li yekem weşanxaneya kurdî Nûber'ê damezirandin. Edîtorê Weşanên Nûber Îzedîn Oktay ku di sala 1998'an de di tekane rojnameya kurdî Azadiya Welat de dest bi nûçegihaniyê kiriye û tûşî jana zirav a kurdî bûye, piştî ku ji bo xwendina zanîngehê diçe Wan'ê, li wir dest bi pêvajoyeke nû ya wêjekariyê dike. Pêşî di xebatên sazkirin û weşandina govara Artos û dûre jî di yên rojnameya Pusula ya heftane de bi awayekî çalak cih digire. Piştî çendin salan ku vedigere Sêrt'ê, karûbarên rojnamegerî û wêjekariyê didomîne. Piştî em agahdar bûn ku Îzedîn Oktay hê jî netebitiye û li Sêrt'ê bi hin dostên xwe re Weşanxaneya Nûber'ê vekirî ye me xwest em sedem û xebatên pêvajoya damezirandina Nûber'ê û rewşa kurdî ya li Sêrt'ê jê bipirsin. Oktay, anî ziman ku berê ji bo damezirandina weşanxaneyeke kurdî, li Sêrt'ê derfet kêm bûne, lê belê ji ber bazareke zimanê kurdî afirî ye, derfet zêde bûne û wan dest bi vê xebatê kirîye. Oktay got: "Wexanxaneya Nûber'ê, bi piştgiriya weşanxaneyeke li Stenbol'ê ku berhemên tirkî diweşîne hate damezirandin. Wan xwest ku li Sêrt'ê weşanxaneyeke kurdî ku armanca wê xizmeta kurdî bê damezirînin. Ji ber ku vê daxwazê hêviyên me jî geş kir em bi dilniyazî beşdarî vê pêvajoyê bûn û me dest bi kar kir. Min jî xwest ku ez tecrubeyên xwe yên salan bi hevalên xwe re parve bikim û bibim alikar. Em karê edîtoryal û hemû karên din ên berhemên ku em diweşînin li Sêrt'ê pêk tînîn. Tenê karên teknîkî li Stenbol'ê pêk tên."

## "Nuber li Sêrt'ê yekem e"

Oktay anî ziman ku daxwaza wan ew e ku bi weşandina berhemên kurdî, li Sêrt'ê ji bo çand û wêjeya kurdî pencereyek nû vekin û ji ber vê yekê jî xwestine ku navê govara wan Nûber be. Oktay da zanîn ku li Sêrt'ê çi bi tirkî çi kurdî weşanxane tunebûne, tenê hin rojnameyên bi tirkî yên protokolî hebûne û ev rojname jî bêtir debara xwe bi reklamên dezgehên dewletê dikin. Oktay amaje bi bêderfetiya weşankariya li Sêrt'ê kir û da zanîn ku rojnameya Mücadele ji ber bêderfetiyan, piştî 53 salan qeflê li deriyê xwe xistiye û hatiye girtin.




## "Em klasîkên cîhanê werdigerînin kurdî"

Oktay diyar kir ku wan heta niha dû pirtûkên zarokan, dû yên di derbarê çandiniyê û yek jî di derbarê kişikê çap kirine û wan biryar daye ku ew ê pirtukên klasîk ên cîhanê û bi taybetî jî yên Franz Kafka wergerînin kurdî û got: "Pirtukên klasîk ên ingilizî û tirkî di lîste ya beşa wergerên me de ne. Me dû pirtûk amade jî kirine. Ger ku wergerandinên wan encam bidin em ê wan biweşînin." Oktay anî ziman ku armanca wan ew e ku di weşangeriyê de Sêrt'ê jî derxînin asta Amed, Mêrdîn, Batman û Wan'ê.

## "Li Sêrt'ê pirtûkfiroş tune ne"

Edîtorê Nûber'ê Îzedîn Oktay diyar kir ku armanca wen ne tenê weşandina pirtûkan e û ew dixwazin ku Sêrt'ê di warê, nivîskarî, çandî û hunerî de jî bigeşînin û wiha dom kir: "Koma me ya xwendina pirtûkan heye. Pirtûka ku em destnîşan dikin dixwînin û dûre li hev dicivin û pirtûkê bi şêweyên wêjeyî û nivîsbariyê de dinirxînin. Ji vê komxebata me re eleqeyeke baş heye; Lê belê kesên ku bi kurdî dinivîsin û dixwînin kêm in. Li Sêrt'ê potansiyelek ku bi kurdî dixwîin heye, Lê belê li Sêrt'ê tunebûna pirtûkfiroşan astengiyeke mezin e. Li Sêrt'ê dikanên ku pirtûkên dibistan û zanîngehê difroşin hene, lê yên ku pirtûkên klasik bifroşin tune ne. Ev yek jî kêmasiyek mezin e."

## "Weşanxane bêyî redaktekirinê pirtûkan diweşînin"

Oktay girîngtirîn sedema xemsariya xwendina kurdî bi rewşa aborî ve pêwendîdar kir û anî ziman ku ji ber çapkirina pirtûkan pir biha ye, weşanxane nikarin pirtûkan çap bikin, tenê karên reklaman dikin û dom kir: "Li heremê nêzîkî 100 weşanxane hene. Ji van weşanxaneyan hinek karê edîtoriyê û redaksiyonê jî nakin. Tenê pirtûk çap dikin. Ji ber vê yekê di gelek pirtûkan de peyv û hevok şaş têne nivîsandin, dawiya nivîsan tune ye û gellek şaşiyên din têne kirin. Nivîskar çawa nivîsandibe wisa têne weşandin. Ev karê editoriyê ye. Divê adîtoryalî bi pêş bikeve û pirtûkên ku bêne weşandin, bi baldarî bêne şopandin û redaktekirin û piştre bêne çapkirin."

## "Di navbera weşanxaneyan de diyalog tune ye"

Îzedîn Oktay balkişand ku di navbera weşanxaneyan de diyolog û yekîtî tune ye û ji ber vê yekê jî pirtûk nayên belavkirin. Oktay da zanîn ku pirtukên ku hatine weşandin jî ji alî şirketên ku karûbarên weşangeriya tirkî dikin ve têne çapkirin û belavkirin, ji ber vê jî pirtukên kurdî lawaz dimînin. Oktay di derbarê xwedîlêderketina kurdî de jî wiha peyivî: "Dive gel di jiyana rojane de bi zamenê xwe bipeyivê. Asimilasyonek mezin li ser zimanê kurdî heye. Amûrên teknolojiyê yên Tirkiye'yê bi zimanê tirkî ne û her wiha televizyon jî bandoreke mezin a neyênî li ser zarokan dikin. Divê dê û bav, li hember vê asîmîlasyonê helbiwestin û teqez zarokên xwe hînî kurdî bikin û wisa wan mezin bikin. Lê ger ku jiyan ne bi kurdî be, derfet peyda bibin jî geşbûna kurdî pêk nayê."

## "Rojane difikirin û rojane dijîn"

Oktay amaje bi kirberiya li dijî kurdî jî kir û diyar kir ku astengiyên li ser zimanê Kurdî ne wekî berêne, lê ji ber ku gel jiyanek rojane dijî, berê xwe dide zimanê tirkî û zimanê xwe hîn nabe. Oktay dom kir: "Mirov, rojane difikirin û rojane dijîn. Ew yek bandoreke xerab li ser xwendin û pêşketina zimanêkurdi dike. Dema ku hest neyê nivîsîn, êş û elemên ku em niha dijîn, ne dibe helbest ne dibe pirtûk û ne jî dibe çîrok. Temenê pirtûkekê sed sal e, lê belê agahiyên televîzyon û malperên înternetê rojane ne."

## "Êdî bazarek kurdî jî heye"

Di derbarê nebiyên ku li kurdî têne kirin de jî Oktay anî ziman ku berê digotin; 'Zimanê kurdî ne zimanê nivîsînê ye, lê dengbêjan bi dengê xwe dirok, çand û hunera kurdî gihandine nifşên li dû xwe, Lê belê ji ber ku wekî berê denbêjî ne çalek e, divê dengbejî bibe çand, dîrok û wêjeya kurdî. Oktay got: "Pirtûk herdem li ber destê mirovan e; Lê belê malperên înternetê rojane ne. Ji ber vê yekê divê pirtûk bêne nivîsandin, weşandin, belavkirin û bêguman bêne xwendin. Niha xwendavanên kurdî hene û divê kurdî here ber destê wan."